محەمەدی حاجی مەحمود:

7 تائێستاش بە باشی تێناگەم ئۆپۆزیسیۆن چی دەوێ




# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora




**Rêveberê giştî yê Korek Sîrwan Barzanî**

Ti şoreşek bêyî piştgiriya aborî bi ser nakeve

Rûpel ▶11

Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 87 | 17 Adar / März 2011

# Sûriye li ber teqînê ye

■ Di 7. salvegera serhildana Qamişlo de bi hezaran Kurd civiyan

■ Li Şamê girseyek Ereb li dijî rejîma Esad meşiya û banga demokrasiyê kir

4 »

## Rojev

### Senaryo pir, bersiv hindik in

Êrîşa li dijî Îbrahîm Tatlises gelek pirsên bêbersiv xiste nava raya giştî. Medyaya Tirk li ser êrîşê gelek senaryoyan amade kir. Yek ji van tezan ew e ku şirîkê Tatlises ê ji Herêma Kurdistanê Şirketa Adil Mutehîde ye. Rêveberê Ragihandina Şirketê red kir ku pirsgirêkên şirketa wan ligel Ibrahîm Tatlises hebe

Rûpel ▶2

## Kurdên Ewrûpa

### Kurd bûn Tirk, Tirk jî bûn dostê Almanan

Koçberiya Kurd û Tirkan a ber bi Almanya ve bû mijara filmekî. Fîlmê bi navê 'Almanya-Willkommen In Deutschland.'koçberiya malbetek Kurd a Dêrsimî tîne ser perdeya spî û wan wek Tirkan dide nîşandan. Derhenêra fîlm jî keça Dêrsimî Nesrîn Şamderelî ye.

Rûpel ▶6

## Kurdistan

### Gûftugo didomin, encam tune ne

Kongreya Civaka Demokratîk (KCD) hewl dide ku partî û rêxistinên Kurd ên li Tirkiyê beriya hilbijartinê nêzî hev bibin û dengê Kurdan bikin yek. Rayedarên BDP, HAK-PAR û KADEP'ê ragihandin ku li gel hebûna çend astengiyan, ew heta radeyek zêde nêzî hev bûne. Lê heta niha ti encamek diyar tune.

Rûpel ▶3











Great Britain



Tatlises piştê ku bernameya xwe Îbo Show pêşkêş kir û derket der rastê êrîşê hat

# Kê êrîşî Îbo kir?

Medyaya Tirk di derbarê êrîşa li dijî Tatlises de gelek guman û tez ragihand. Li gor medyaya Tirk guman zêde li ser Çeteya Sauna û şirîkê Tatlises ê ji Başûrê Kurdistanê hene. Lê şirîgê Tatlises ragihand ku ti pirsgirêk di navbera wan de tune.

**Hewlêr (Rûdaw) –** Rêveberê Ragihandina Şirketa Adil Mutehîde red kir ku pirsgirêkên şirketa wan ligel Ibrahîm Tatlises hebe û daxuyand ku di van rojan de serdana Tirkiyê kiriye, li wir ligel Tatlises civiyaye û biryar bû piştî 15 rojên din ji bo bicîkirina projeya Deşta Buhişt li Dihokê bê Kurdistanê.

Saet 12'ê şeva 13'ê Adarê piştî ku hunermend Îbrahîm Tatlises bernameya `Îbo Show` li kanala Beyaz pêşkêş kir û vedigeriya malê, li Stenbolê ji aliyê çend kesên nenaskirî ve ket ber guleyan û hat birîndarkirin. Ew di cîh de hat veguheztin nexweşxaneya Meslek a li Stenbolê. Li gor daxuyaniya pizîşkên nexweşxaneyê, birîna Tatlises giran e û guleyek li ber serê wî ketiye. Heta niha çar neştergerî jê re hatine kirin.

Piştî bûyerê, waliyê Stenbolê ragehand ku li cihê bûyerê 11 guleyên klaşînkovê hatine teqandin, lê 4 gule li Tatlises ketine, ku yek ji wan li serê wî ketiye.

### Tatlises û çîroka Deşta Buhiştê li Kurdistanê

Hunermendê navdar ê Kurd Îbrahim Tatlises, berî salekê li ser daweta Serokê Civata Rêveber a Şirketa Adil Mutehîde Dr. Ruşdî Seîd, ji bo hilberîna xanî û zeviyan û reklamkirina projeyek niştecihbûnê bi navê Deşta Buhiştê, hat Herêma Kurdistanê. Lê dû re xwediyê vê şirketê ragehand ku Tatlises şirîkê projeyên wan e, heta niha çarenivîsa Tatlises ne diyar e, ku carek din tê Herêma Kurdistanê yan na.

Tatlises çi ji ber bernameya televizyona,stran û fîlmên xwe, li Kurdistanê gelek hezkirên wî hene. Hinek dikandar wêneyên wî di nav çarçoveya şûşê danîne û bi dîwarên xwe ve daleqandine.

### Tatlises: 4 salên din Hewlêr dibe Dubey

Îbo roja 17'ê Adara 2010'an bi riya firokxaneya navdewletî ya Hewlêrê gihişt Herêma Kurdistanê. Wê demê di hevpeyvînek taybet de ligel Rûdawê ku di hejmara 106an de hat belavkirin, Tatlises gotibû: "Hewlêr di hundirê 4 salên din de dibe Dubey".

Tatlises ku kesekî xwedî sermaye ye û bi navê Tatlises kanalek wî ya televizyonê jî heye, her wê demê bo Rûdawê gotibû: "Di pêşerojek nêzîk de ez ji bo xwe jî dest bi projeya hilberînê li Herêma Kurdistanê dikim".

### Dr. Ruşdî: Tatlises hevbeşê projeyên me ye

Her çiqasî pêşî şirketa Adil Mutehîde belav kir ku Îbo ji bo reklamkirina projeya Deşta Buhişt aniye Kurdistanê û di çend reklamên televizyonê de jî bi zimanê Kurdî derket, lê dû re Dr. Ruşdî Seîd di hevdîtinekê Rûdawê de kir, ragehand ku Tatlises hevbeşê projeyên wan e: "Yekemîn car ku Tatlises hat, me wisa lihev kiribû ku bi 3 milyon dolaran 2 klîpên reklamê ji min re çêbike. Lê gava cih dît got ez ne ji bo pereyan hatime, hest dikim qismet û nesîbê min ligel te ye û dixwazim ligel te bibim şirîk. Min jî jê re got min berê hevbeşî ligel kesî nekiriye, lê pê diramim."

### Kê êrîşê Tatlises kir?

Li gor raporek rojnameya Akşamê, polîsên Stenbolê ji bo eşkerekirina kesên ku teqe li Îbo kirine, pişta xwe dispêrin sê têzan.

Têza yekem ew e ku grûbek dewlemend pere bi deyn dabin Tatlises, ji bo xilaskirina projeyên Deşta Buhiştê li Herêma Kurdistanê. Lê ji ber ku aliyê vê projeyê berevajî bûye nekariye deynên xwe bide, grûba navbirî daxwaza pereyan jê kiriye, lê wî pere nedane û grûbê jî gef lê xwarine, Tatlises di vî warî de pêştir dadgeh agahdar kiribû.

Têz an gumana duyem, ku niha polîs li ser dixebitin, Kasim Zengîn e ku serokê grûba mafyaya Saûna ye. Gotegot hene ku vê grûbê daxwaza 300 hezar dolaran ji Tatlises kiriye, lê wî ev daxwaz bi cîh nekiriye û grûbê jî gef lê xwariye, wî jî dadgeh agahdar kiriye.

Gumana sêyem li gor rapora rojnameya Akşam, têkiliya êrîşê bi Serokê Civata Rêveber a Şirketa Adil Mutehîde Dr. Ruşdî Seîd re heye.

Rojnameya Akşam nivîsiye: "Îbrahim Tatlises di 3'ê Adarê de çûye dadgehê û gilîname li ser Dr. Ruşdî Seîd tomar kiriye, ku Dr. Ruşdî Seîd gef lê xwariye."

Lê Rêveberê Ragehandina Şirketa Adil Mutehîde Saman Nasih ji bo Rûdawê red kir ku pirsgirêkên wan ligel Îbrahîm Tatlises hebin û got: "Berî çend rojan şandek şirketa me bi serokatiya Dr. Ruşdî çû Stenbolê û ligel Îbrahîm Tatlises civiyan. Herdu aliyan li hev kir ku piştî 15 rojên din dest bi cîbicîkirina projeya Deşta Buhiştê li Dihokê bikin. Herwiha me moleta Tatlises Bingo ji Tirkiyê wergirt.

Ti pirsgirêka me ligel Tatlises tune, bi ser de jî piştî xilasbûna civînan me civînek çapemeniyê girêda û li xwaringeha wî li Stenbolê bi hev re nan xwar û dû re jî stran ji me re gotin. Niha jî amade ne hemû serwet û samana Adil Mutehîde li ser başbûna Tatlises xerc bikin."

### PKK: Tatlises xeletî li himberî me nekiriye

Teqekirin li Tatlises ne tenê bi meseleya pereyan ve girêdayî ye, lê siyaset jî dibe ku tê de hebe. Nemaze ku deng û gotegota wê yekê hebû ku Tatlises xwestiye xwe ji bo hilbijartinên 12'ê Hezîranê berbijar bike. Hinek çavkanî amaje didin ku Tatlises li benda wê yekê maye ku ji aliyê AKP'ê ve li bajarê Stenbolê bê berbijarkirin.

Medyaya Tirkiyê wek ku destê PKK'ê di vî karî de hebe, roja yekem nûçe ragihandin, lê PKK'ê bi lez bersiva wan da û ev tomet red kir.

Li gor daxuyaniya Koma Civakên Kurdistanê, KCK'ê, ku roja 15 Adarê belav kir, êrîşa li ser Tatlises şermezar kiriye. KCK dibêje: "Hunermendê Kurd Ibrahim Tatlises li bajarê Kurdan ji dayik bûye, heta niha ti xeletî li himber bizava rizgarîxwaza Kurd nekiriye. Hetta Kurd parastine û ji ber vê helwesta xwe jî hatiye dadgehkirin û karekî wisa nekiriye ku me nerehet bike.".

Tatlises di 1952'an de li bajarê Ruha ji dayik bûye, heta sinifê 6 an seretayî xwendiye, xwediyê 30 albûmên stranan e û hinek fîlmên wî jî hene.

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçi

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.
© Hemû maf parastî ne

# Partiyên Kurd hê di guftûgoyan de ne



▶Ji bo bi hevre beşdarbûna hilbijartinê, KADEP û HAK-PAR li benda helwesta BDP'ê ne

▶Berdevkê Hêzên Gerîlayên PKK'ê: Em ê bangî kes û hêzên Kurd ên din bikin, werin eniyek a Kurdan damezirînin

Hêmin Xoşnaw

Kongreya Civaka Demokratîk (KCD) hewl dide ku partî û rêxistinên Kurd ên li Tirkiyê nêzî hev dike da ku bi hevre beşdarî hilbijartinan bibin. Li gel hebûna çend astengiyan, partiyên Kurd dibêjin ku ew heta radeyek zêde nêzî hev bûne. Berdevkê Hêzên Parastina Gel (HPG) jî dibêje, ew xeta sor li ser ti namzetekê danaynin.

Tevî ku ji bo gihiştina parlementoyê pêwîst e her partiyek benda ji sedî 10 derbaz bike, lê di sala 1991'an de cara yekem partiyek Kurd (Partiya Keda Gel, HEP) bi hevpeymaniya li gel Partiya Sosyaldemokrat (SHP) a Tirkiyê kete parlementoyê. Astengiyek yasayî ji bo Kurdan heye ku nûnerên xwe rêkin parlementoya Tirkiyê. Di hilbijartina 2007'an de Partiya Civaka Demokratîk (DTP) li Tirkiyê û bakûrê Kurdistanê bi namzetên serbixwe 21 parlementeran xiste nav parlementoyê. Bi sûdwergirtina ji wê ezmûnê, Kurd hewl didin di hilbijartina parlementoyê ya bê de (12'ê Hezîranê), bi awayek bihêztir biçin nava parlementoyê. Ji bo vê yekê jî di bin serpereştiya Kongreya Civaka Demokratîk (KCD) ku herdu parlementerên Kurd ên ji parlementoya Tirkiyê hatin avêtin, Ahmet Turk û Aysel Tugluk serokatiya wê dikin de, Komîsyonek Bilind a Serpereştîkirina Hilbijartinê hatiye damezirandin. Berdevkê KCD'ê Cemal Coşgun got: "Karê wê komîsyonê destnîşankirina 50 namzetan e, bi pejirandina hevwelatiyên Kurd, li seranserî Tirkiye û Kurdistanê."

### BDP wê çawa namzetan diyar bike?

Ji bilî wê komîsyona ku ji 5 kesan pêk tê, komîsyona bajaran jî hatiye damezirandin û kesên dixwazin bibin namzet, serdana wê komîsyonê dikin. Berdevkê KCD'ê di dirêjiya axaftinên xwe de bo Rûdawê eşkere kir ku, "Heta niha zêdetirî 1000 kesan serdana komîsyona bajaran kirine." Wê ew komîsyon jî çend kesên balkêş diyar bike û dosyeya wan rêke komîsyona bilind. Wê ew komîsyon jî di nava hemûyan de 50 namzetên herî bi hêz destnîşan bike. Herwiha divê ji sedî 40'ê namzetan jî jin bin. Eger li ser namzetkirina kesek diyarkirî raya giştî razî nebûn? Coşkûn dibêje: "Em nakin namzet."

> "Ji bo makezagona nû yekitiya Kurdan pêwîst e"

Bi baweriya Serokê KADEP'ê Şerefettîn Elçî, hilbijartinên 12'ê Hezîranê ji bo Kurdan pir girîng in, ji ber ku piştî hilbijartinê wê ji nû de sîstema dewleta Tirk bê avakirin. Ji ber ku piştî wê hilbijartinê, wê ji bo Tirkiyê makezagonek nû bê amadekirin. Elçî ji Rûdawê re got: "Pêwîst e Kurd ji bo di amadekirina makezagonê de bê bikarin rolê xwe bileyîzin, bi hêzek jîr biçin parlementoya Tirkiyê û ji bo wê armancê jî, pêwîst e yekitiyek a Kurdan bê damezirandin."

Tevî ku BDP di qada siyasî de partiya herî bihêz û bi girse ye, lê di civaka Kurd a li Tirkiyê de deng û rengek din jî hene. Ji ber vê yekê jî Ahmet Turk û Aysel Tugluk çûne serdana hemû partiyên Kurd û daxwaz ji wan kirine ku bi hevre tevlî hilbijartinê bibin.

### HAK-PAR û KADEP li bendê ne

Berdevkê KCD'ê Cemal Coşkun eşkere kir ku, Hevserokên KCD'ê çûne serdana Serokê HAK-PAR'ê Bayram Bozyel û Serokê KADEP'ê Şerefedîn Elçî; "Em li gel birêz Ahmet Turk û Aysel Tugluk çûn serdana hemû partî û rêxistinên Kurdan. Me got, em di hilbijartinê de ji hev dûr nekevin. Ew kesên bi we baş, bikin namzet, yan jî ew kesên ne di nava BDP'ê de ne û nêzî we ne, hûn dikarin ji bo namzetkirinê pêşniyar bikin." Coşkun derbarê bersiva wan de dibêje: "Gotin dem bidin me, heta em li gel heval û rêveberên xwe guftûgo bikin. Lê heta niha ti bersivek nedane me."

Serokê HAK-PAR'ê Bayram Bozyel ew yek piştrast kir ku KCD'ê ew pêşniyar ji wan re kiriye. Di daxûyaniyek a ji bo Rûdawê de Bozyel got: "Em dixwazin wekî eniya Kurd bi hevre tevlî hilbijartinê bibin. Ji ber ku eger em di hilbijartinê de wekî eniya Kurd tevlî hilbijartinê bibin, wê dengên zêdetir bi dest bînin. Di heman demê de wê di nava siyaseta Tirkiyê de giraniya Kurdan zêdetir bibe û ji bo amadekirina makezagonek nû, rola me zêdetir bibe."

Bozyel derbarê astengiyên lîsteyek hevbeş a Kurdan de dibêje, astengiya herî mezin ew e ku BDP bi biçûkî temaşeyî hêzên siyasî yên Kurd ên din dike: "Eger ew biryarê bidin, rêxistin û partiyên Kurd ên din wekî hevpar an jî şirîkê xwe bibînin, ti pirsgirêkek namîne. Ya bimîne jî pirsgirêkên teknîkî ne." Bozyel wiha pêde çû: "Ew xwe wekî tekane nûnerê tevgera Kurd bi nav dikin. Ev jî di nava Kurdan de bê bawerî li beraberî wan hevalan çê dike. Tevî ku guftûgo navbera me de hene, heta niha di wê derbarê de dilê me av ne vexwariye."

Lê bi baweriya serokê KADEP'ê Şerefedîn Elçî, ji bo hilbijartina bê li pêşiya yekitiya Kurdan astengiyên ciddî nemane. "Li gor texmînên min ti astengî nemane, ji ber niha daxwazên Kurdan nêzî hev in. Niha top di saha BDP'ê de ye. Îro ew bi hêz e û pêwîst e ew biryarê bidin; lê pirsgirêk ew e îro îradeya siyasî ne di destê BDP'ê de ye. Eger îrade di destê wan de be, mirov dikare hevpeymaniyê çê bike û peymanekê mor bike."

### PKK: Werin em eniyek a Kurdan damezirînin.

Eger ne rastûrast jî be, rexneyên Bozyel û Elçî pêşkêşî PKK'ê bûn û bi baweriya wan biryara siyasî ya BDP û KCD'ê di destê PKK'ê de ye.

PKK, radigihîne ku ew bi hemû awayî piştgiriyê didin hevpeymaniya Kurdan a ji bo hilbijartinê, xeta wan a sor li ser ti alî û kesî nîne.

Berdevkê HPG'ê Dozdar Hemo dibêje, ji bo wê hevpeymanê ew qet nabin asteng; "Belkî wê bang bikin û bêjin; werin em eniyek a Kurdan damezirînin. Xeta me ya sor li ser ti kesî nîne. Berevajî em ê bang bikin û bêjin; werin em eniyek a Kurdan damezirînin."

Bayram Bozyel di hevpeyvînek berê a li gel Rûdawê de gotibû, ew bi hêvî ne ku di hilbijartina hezîranê de 1 milyon deng bi dest bînin.



Ahmet Dere

## Hilbijartin



Ji pêvajoya hilbijartinên giştî yên li Tirkiyê re 3 meh mane. Weke her demên borî, vê carê jî rojeva Tirkiyê kişiyaye ser hilbijartinan. Ji niha ve senaryoyên leystokên qirêj têne çêkirin. Çendî di vî warî de AKP û CHP di nava tekoşînekê dijwar de bin, partiyên din jî bêdeng nîn in. Di rojên pêş de wê ev qirecire zêdetir gur bibe û deng vede.

Girîngiya hilbijartinên îsal ji bo Kurdan jî mezin e. Piştî 4 salên borî, ku di parlemena Tirkiyê de koma BDP'ê hebû, divê hêza Kurdan mezintir bibe. Ji bo ku pirsgirêka Kurd zêdetir bikeve rojevê û di derbarê çareseriyê de niqaşên dorfireh û bi encam pêk werin, divê hejmara parlementerên koma BDP'ê ji 30'yî derbastir bibe.

Li gorî daxûyaniyên rayedarên BDP'ê, wê hejmara kursiyên wan di navbera 30 û 40'î de be. Ev daxwazekê baş e, lê belê ji bo vê pêwîst e xebatekê pir baş û bi aqil bê meşandin. Ji bo ku di parlementoyê de derdorê 40 kursiyan bidest bikeve, divê di navbera partiyên kurd (BDP, HAK-PAR û KADEP) de hevkariyekê xurt hebe. Lê mixabin, qasê ku te dîtin, hevkariyekê wisa tine û di nava BDP'ê de jî zelaliya ku tê xwastin tine.

Ez niqaşên di derbarê amadekariyên van hilbijartinan de ji nêz ve dişopînim. Qasê ku ez dibînim û mixabin, weke hemû demên borî, vê carê jî hin kes dixwazin giraniya xwe û ya derdor û malbata xwe di lîsteya berendaman de bidin cih kirin. Beriya her tiştî, ev nêzîkatî dibe sedemê wendakirina pir dengan. Di demên borî de jî vê nêzîkatiyê zerarekê mezin daye hêza Kurdan, eger wiha dewam bike, wê di 12'ê Hezîranê de jî zerarê bide.

Piştî tekoşînekê bi zehmet û çetin, divê derdorên ku xwe weke siyasetmedar, rewşenbîr û rêberên Kurdan dibînin, ji parastina berjewendiyên malbatî û hevaltiya teng dûr bikevin. Piraniya malbatên Kurdên Bakur di vê têkoşînê de bedel dane. Û di nava van Kurdan de pir kesên ku bikaribin siyasetê û dîplomlasiyê bimeşînin hene. Lewre, pêwîstî heye ku ji van kesan, an jî şexsiyetan re rê were vekirin. Eger, weke hemû demên borî, vê carê jî di wêneyê siyasetmedarên Kurd de, yên ku bikevin parlementoyê, guhertinekê çê nebe, mixabin wê encama hilbijartinên îsal zêde bersivê nede daxwaza tekoşîna gelê me.

Pêşniyara min û hêviyên min ew in ku, di lîsteya berendamên BDP'ê de ji %80 kesên nû cih bigirin. Eger ne wisa be û carekê din heman parlementer bikevin TBMM'yê, wê zehmet be ku pirsên gelê me bersivê bibînin.



# Kurdistana Rojava û Sûriye dikele

Opozisyona Ereb hêviyek mezin danîbû ser destpêkirina raperîna li Qamişlo.

Tevgera Kurd naxwaze ku serhildana Sûriyê ji Qamişlo destpê bike, li berevajî hêviyên hêzên opozisyonê.

Gelo xwepêşandanên 15`ê Adarê yên Şamê destpêka serhildana Sûrîye ye?

**Hîm Mele Ehmed**

Tûnis, Mîsr, Lîbya û niha Sûriyê." Rikebirên Erebên Sûriyê di salvegera 7'an a serhildana Qamişlo de bi hêviyeke mezin dixwestin vê nûçeyê di ekranên televizyonan de bibînin. Lê bûyerên 15'ê Adarê ku li Şamê û çend bajarên din rûdan, hêviyek mezin kirin dilê tevayiya gelên Sûriyeyê, gava bi sedan xort xwepêşandanên ji bo azadiyê li dar xistin.

Rewşenbîr û opozisyon ku di pey serhildana 12'ê Adara 2004'an de helwesteke nebaş ji Kurdên binxetê girtibûn, daxwaza dubarekirina vê serhildanê ji aliyê Kurdan dikirin. Lê Kurd di tirsek mezin de bûn, tirsa ku dîsa ew hevwelatiyên wan ên Ereb wan di bin êrîşên leşkerî yên Artêşa Sûriyê û yên peyayên wê ji eşîrên Erebên koçer de, bi tenê bihêlin. Lewra serkirdeyên tevgera kurdî û piraniya rewşenbîran jî nedixwestin û naxwazin xortên Kurd di şoreşekê de bikin rêza yekê. Li gel wê jî bi tevayî Kurd û Ereb bi wê nerînê re ne, ku eger ne vê deqîqê be, divê di nêzîk de gelê Sûriyê raperîna li dijî 40 sal koledariya destpê bike.

### Heft hezar kes civiyan lê tevgerê ew belav kirin

Herdu çarçovên serekî yên Tevgera Kurd, Encûmena Siyasî û Hevbendî, ji bo bîranînê du şêweyên cuda ragehandibûn. Di 5'ê Adarê de Encûmena Siyasî daxwaz ji gelê Kurd kir ku di şeva 12'ê Adarê de mûman vêxin û sibehê di demjimêr 11'ê de li ser kolanên mezin 5 xulekan bêdeng rawestin. Herwiha encûmenê ji bo canê şehîdan daxwaza lidarxistina bîranînekê kir ku li goristana Qidûrbegê li Qamişlo bi rê ve biçe.

Piştî çend rojan ji vê daxuyaniyê Hevbendiya Demokrata Kurd jî ragehandinek belav kir ku tê de çalakiyên bîranîna serhildanê eşkere kir. Hevbendiyê daxwaza vêxistina mûman û rawestana bê deng kir, lê nexwest ti şahiyên komelî li ser kolanan an li goristanê li dar bixe.

Êvara 12'ê Adarê weke hersal bi vêxistina mûman li ser pencere, balkon û banê xaniyan hate geş kirin. Roja din li ser bangewaziya her du çarçoveyên tevegra kurdî û ya Partiya Yekîtiya Dêmoqrat jî (PYD), bi dehhezaran kes pênc xulekên bêdeng li ser canê şehîdan rawestiyan.

Piştî nîvro li dor demjimêr 15:00 bi hezaran kes li pey daxwaza partiyên Encumena Siyasî û PYD li ser gorên şehîdan li Qamişlo kom bûn. Wêne û videoyan, ku di dema bîranînê de hatine girtin, hejmarek mezin ji mirovan didine xuyakirin û amadebûnek kêm a hêzên ewlekariya Sûriyê. Çalakiya bîranînê bi rengekî nelibîr piştî 25 xulekan bi dawî bû. Gelek kes, nameze yên ji deverên dûr hatibûn hêrs bûn. Lê berpirsên Partiyên Kurd ji wan xwestin ku belav bibin.



Li Şamê, li Tarika Harîqa roja 15'ê Adarê girseya gel meşiya

### "Diviya bû em tev bê westan û çêtir bixebitiyana"

Çalakvanê Kurd Lewend Elî Hisên ku di kombûna Qamişlo de amade bû, ji Rûdawê re raghand, "Ev karê sist ku Encumena siyasî û Hevbendiyê û PYD'ê kir, li nik rojnamevan, zêrevan û lêkolînvanên siyasî cihê pirsê ye. Pirsa bîranînê li ser goristanê, bêbaweriya berpirsên partiyan bi bîranînê encama wê bîranîna bîst deqîqe bû, eger bi destê ciwanên Kurd bûna, wê ew şehîd bi rêzgirtin bihatana bibîranîn."

Siyasetmedar û nivîskarê Kurd Cankurd di vê derbarê de karên girîngtir ji çûyîna ser goran bibîr tine û dibêje: "Ez dibînim ku histobariya partiyan ji çûyîna ser goran her salê carekê pir mestir û girîngtir e. Mirov dikare bi wan şehîdan astengiyeke mezin ji deselatê re li derveyî welêt pêda bikira. Bi çûyîna ser gorên şehîdan wefadarî bo wan teva nabe, diviya bû em tev bê westan û çêtir bixebitiyana ji bo standina mafê xwe ji dewletê."

### Tevgerê rê neda 12'ê Adarê bibe destpêka serhildanê

Ji aliyekî din ve opozisyon û rewşenbîrên Ereb û Kurd bi hêviyeke mezin li bîranîna îsal a 12'ê Adarê temaşe dikirin. Piştî ku daxwazên opozisyona Ereb ji bo destpêkirina serhildana gel di 5'ê Şibatê de li dijî rêjîma Sûriyê cihê xwe li ser kolanên welêt nedîtibû, hêdî bi rengekî xuyakirî bang di Facebookê de û di malperên Sûriyê de ji gelê Kurd re dihatin ji bo di 12'ê Adarê de serî hildin. Lê li gor dihate texmînkirin tevgerê rê neda ku 12'ê Adarê bibe bahaneya destpêkirina serhildaneke nû li dijî rêjîmê.

### Bayê serhildanê li Sûriyê jî digere

Piştî sê meh ji xweşewitandina Albûezîz li Tûnisê bablîsoka serhildanên welatên Ereban bi xurtî li hundurê Sûriyê jî şopa xwe dihêle. Nûçeyên rojane ji hundurê Sûriyê tên ku awayên cuda yên hêrsbûna hevwelatiyên vî welatî li dijî rêjîmê didin xuyakirin, wek sloganên li ser dîwaran, kombûnên şermok li hin bajaran, an çalakiyên takekesan ji bo destpêkirina serhildanê. Çalakiya herî xurt li girtîgheha Adra li Şamê li dar ket, gava hejmarek mezin ji girtiyên siyasî di 8'ê Adarê de ketin gireva birçîbûniyê.

Bayê serhildanê li Sûriyê eger hîn bi tirs be jî, lê bûyerên ku roja 15'ê Adarê çêbûn, ji bo wêneya siyasî li Sûriyê guherînek mezin bûn, gava li Şamê, Dêrazorê, Deraayê û Helebê bi sedan xwepêşander bi rêve çûn û duruşmên ji bo azadiya Sûriyê qîr kirin. Çalakvana bi navê Suhêr Alatasî di hevpeyvinekê ji BBC re got ku kolanê gavek berî rikebiran avêt, yên ku biryar dabûn roja pêncşemê herin ber deriyê Wezareta Hundur. Alatasî wiha axivî: "Ew xwepêşandan tenê çirûskek in û xwepêşander niha taktîkek nû destpê kirine ku li ser çalakiyên ji nişka ve ava dibe, bêyî ku ew dema destpêkirina xwepêşandanên nû ragihînin."

### Newroza Qamişlo û pirsgirêka ala Kurd û Sûriyê

Çalakiyên Kurdan û bayê serhildanên welatên Ereb dîsa pirsgirêkeke ne li bîr anî holê, pirsgirêka ala Kurd. Ji 12'ê Adara 2004'an ve di her çalakiyek û bûyerekê de xort ala Kurd bilind dikin. Ev jî bûye bahaneyek li cem rêjîmê ji bo bêje Kurd daxwaza parçebûnê dikin û ne niştîmanperwer in. Li pey gotinên wisa daxwazên rakirina milyon alên Sûriyê di Newrozê de hatin bilind kirin û di Facebookê de grûpek bi vê daxwazê hate çêkirin ku navê xwe kir "Bihêlin em Newrozê bikin festîvalek niştîmanperwer, em milyon alên Sûriyê hildin." Zêdeyî 2000 kes bûn endamê vê grûpê, lê bersiv zû hat ji kesên li dijî vê daxwazê. Grûpek nû çêkirin û navê wê kirin "Bihêlin em 4 milyon alên Kurd hildin, ne ti alên din" endamên vê grûpê ta dema çêkirina vê nûçeyê zêdeyî 3000 kes bûn. Pirsgirêka alê ku tenê di Facebookê de cihekî fereh girtibû, 14'ê mehê kete radeyek nû, gava Hevbendiya Dêmoqrata Kurd li Sûriyê ragehandinek belav kir ku tê de li dijî "Rakirina wêne û alên ne niştîmanperwer radiweste."

# Turkmen ji hebûna pêşmergeyan ne aciz in

▶Nûnerê serokê Herêma Kurdistanê li Kerkûkê: Helwesta Turkmenan a di derbarê pêşmergeyan de ji ya Ereban nermtir e

▶Kurdekî Kerkûkî: Ji dema ku pêşmerge hatine Kerkûkê kevne Baasî û Erebên tund bêdeng bûne û wek berê zirtan li me nakin.

**Hêmin Baban Rehîm**

Nûnerê serokê Herêma Kurdistanê yê li Kerkûkê Ebdulletîf Gulî, ji Rûdawê re ragihand ku Turkmenên Kerkûkê daxwaz kirine hebûna wan di nav hêzên pêşmergeyan de hebe û baregeha Bereya Turkmenî li Hewlêrê bê vekirin: "Min jî ev daxwaza wan gihand serokê Herêma Kurdistanê."

Lê Cîgirê Waliyê Kerkûkê ji pêkhateya Erebî Rakan Seîd Cibûrî nîgeraniya xwe ji hatina pêşmergeyan pêşan da û got: "Karekî xerab e û di navbera pêkhateyên Kerkûkê de hestiyariyê çêdike. Ev hêz ne serbixwe ne, bi YNK û PDK'ê ve girêdayî ne û nehevsengiya Kerkûkê diafrîne."

Cibûrî, di derbarê behaneyên Kurdan a ji bo anîna hêzên pêşmergeyan de jî dibêje: "Ev ji bo desttêwerdana di karûbarên bajêr de hincet in. Ji ber wek yasa û destûra Iraqê maf nadinku vê hêza biyanî bê Kerkûkê, ji bilî vê yekê jî Ereb û Turkmenên Kerkûkê ne çekên wan ên giran hene û ne mîlîs û hêzên wan ên çekdarî hene. Êdî çawa êrîş dikin ser Kurdan û wan ji Kerkûkê derdixin."

## Heta madeya 140 bê yekalîkirin pêdiviya me bi pêşmergeyan heye

Lê Cîgirê Serokê Civata Parêzgeha Kerkûkê Rêbiwar Talabanî dibêje: "Rasterast û ne rasterast nûçe digihîjin me ku civata siyasî ya Ereb bi mebesta têkdana îdareya Kerkûkê dest ji plan û bernameyên xwe bernedan." Loma endamê Yekgirtûya Îslamî ya Kurdistanê, Rêbiwar Talabanî mabûna pêşmergeyan li Kerkûkê pêwîst dibîne û dibêje: "Heta ku meseleya madeya 140'ê tê yekalîkirin, pêdiviya me bi mabûna wan heye. Pêşmerge li derveyî Kerkûkê ne û bi rêkeftin hatine, em naxwazin di vê demê de vegerin."

## YNK û PDK dixwazin bala xelkê bikişînin

Berdevkê Fraksyona Hevpeymaniya Kurdistanî li parlamentoya Iraqê Mueyed Teyib, ji bo Rûdawê amaje da ku hebûna pêşmergeyan li navçeyên cihê ne nakokî ye: "Yasayî û destûrî ye û heta niha ne hikûmeta Iraqê û ne Amerîkî jî têbîniyên wan li ser vêya nebûn."

Endamê parlamentoya Iraqê ji pişka Bereya Turkmenî di Lîsteya Iraqiye de ku Eyad Elawî serokayetiya wê dike, Erşed Salihî derbarê hebûna pêşmergeyan li Kerkûkê, dibêje ku: "Ti rewatiyek wê ya yasayî tune. Şandina hêzên pêşmergeyan ji bo nuxumandin û rakirina çavê kamerayê ye. Ji ber li wir xelk ne razî ye, YNK û PDK dixwazin bala xelkê bikişînin ku qaşo li derveyî Herêma Kurdistanê gef li ser wan hene, ev jî corek ji xapandina xelkê ye."

## Helwesta Turkmenan nerm e


Pêşmerge di 24'ê Sibatê de çûbûn Kerkûkê

Nûnerê Serokê Herêma Kurdistanê li Kerkûkê Ebdulletîf Gulî ku ev demeke serdana Ereb û Turkmenên bajêr dike û ligel wan dicive, eşkere kir ku: "Helwesta Turkmenan derbarê pêşmergeyên li Kerkûkê ji helwesta Ereban cuda ye, helwesta Turkmenan nermtir e. Tenê 2 têbîniyên Turkmenan hene û gilî dikin ku ji ber çi di nav hêzên pêşmergeyan de Turkmen nînin, nayên qebûlkirin û dibêjin eger Turkmen di nav pêşmergeyan de hebûna, asayî bû bên Kerkûkê. Herwiha Turkmen dibêjin ku dixwazin ji bo vegerandina baweriyê, li Hewlêrê baregeha Bereya Turkmenî bê vekirin. Min ev herdu daxwazên wan gîhand serokê Herêma Kurdistanê. Turkmenan gotine em dixwazin nûnerê me li parlamentoya Kurdistanê û hikûmeta herêmê jî hebe, loma em dixwazin vegerin Hewlêrê."

## Goran: Divê me ron bikin

Derheqê helwesta Ereban de jî, Gulî dibêje Ereb ne xwedî yek helwestê ne. Wek mînak: "Civata kombûna ti têbîniyek li ser hebûna pêşmergeyan heyta niha ti têbîniyek pêşan nedaye."

Lê Cîgirê Waliyê Kerkûkê Rakan Cibûrî, eşkere kir ku li ser hatina pêşmergeyan têkilî ligel serokayetiya civata wezîrên Iraqê kiriye, lê: "Piştî çend caran daxwazkirina vekişîna hêzên pêşmerge ji serokayetiya wezîrên Iraqê, ti bersivek nedane, di bin zexta YNK û PDK'ê de ne."

Parlamenterê Goran li parlamentoya Iraqê Letîf Şêx Mistefa di şandina pêşmergeyan de rexneyan li YNK û PDK'ê digire: "Ti pirsek bi wan re nekirine", loma helwesta tevgera xwe ron nekirin ka gelo piştgiriya çûna pêşmergeyan ji bo Kerkûkê û navçeyên cihê nakokiyê dikin an na: "Eger rast e xeter li ser Kurdan li Kerkûkê heye, divê ji me û xelkê re ron bikin çi ye û çawa ye û li ku ye. Eger wisa be û em bizanin gef li ser madeya 140ê û gelê Kurd heye, emê piştgiriyê bikin, lê em tiştekî li ser van gefan nizanin".

## Erebên tund bêdeng bûne

Dilêr Husên ku welatiyekî Kurd ê daniştvanê Kerkûkê ye, dibêje: "Gelek kesên weke guran li Kerkûkê peyde bûne û li derfetekê digerin êrîşî me bikin. Ji dema ku pêşmerge hatine Kerkûkê kevne Baasî û Erebên tund bêdeng bûne û wek berê zirtan li me nakin. Daxawaz ji serokayetiya Kurdan dikim pêşmergeyan ji Kerkûkê dernexin."



# Malbata Kurd a Dersimî çawa kirin Tirk?




▶Derhêner û lîstikvan Kurd in, lê pesnê Tirkan tê dan...

▶Kurd dîsa ji aliyê Kurdan ve tên înkarkirin. Êşa herî giran jî ev e…

**Ali Guler**

Almanya welatek koçberiyê ye. Li Almanya behsa 8 mîlyon biyaniyan tê kirin. Îsal jî wek 50 saliya hatina karkerên Tirk û Kurd tê pîrozkirin. Derbarê mijarê de bi navê 'Almanya-Willkommen İn Deutschland.' fîlmek hat kişandin. Di fîlm de malbatek Kurd a Dêrsimî wek Tirkan tê nîşandan û Tirk jî wek bira û dostê Almanan.

Tirk û Kurd ev 50 sal in li Almanya dijîn. Heta niha ji aliyê zarokên koçberan ve gelek berhemên kulturî hatine afirandin. Di warê sînemayê de bi dehan fîlm, hatin kişandin. . Fîlmê bi navê "Almanya-Willkommen İn Deutschland" (Hûn Bi xêr Hatin Almanya) ji van bi dehan berheman yek e û yê dawî ye . Ev fîlm cara yekemîn di 61. Mîhrîcana Fîlm a Berlîn ê de hat nîşandan. Fîlm niha jî li seranserê welêt, di vîzyonê de ye. Derhênerê fîlm jî keçek Dersimî ye. Keça bi navê Nesrîn Şamderelî senoryoya fîlm bi xwişka xwe re nivîsandiye. Fîlm, behsa çîroka malbetek Dersimî û hatina wan a Almanya dike. Fîlm li Dersim, Stenbol û Munîhê hatiye kişandin.

### Kurd tune hesibandin

Gotinek pêşiyan heye dibêjin "Kurmê darê ne ji darê be, zewala darê nîne." Ez bawerim ji bo mijar û derhênerê wî fîlmî ev gotin di cîh de ye. Ji ber ku fîlm, behsa çîroka malbatek Dersimî dike. Hatina wan a Almanya û jiyan û têkiliya bi Almanan re. Lê malbat wek malbatek Tirk tê nîşandan. Bi jiyana wan, çand û têkiliyên wan. Fîlm ji aliyê Tirkan ve bi coşek mezin hat ecibandin. Her çiqas çîrok dramatik be jî, film bi motîvên komedî hatiye xemiladin. Xemgînî, ken û komedî di nav hev de ye. Bê guman fîlm di warê teknîkî de jî gelek bi pirsgirêk e. Di fîlm de piranî li ser întegrasyonê tê sekinandin. Dî vî warî de çiqas Tirk sûctar tên ditîn , Alman jî wisa tên dîtin. Herdu gel jî di mijara sûcdariyê de wekhev hatine nîşandan. Ev jî wek polîtîkayên dewleta Tirk tê xuyakirin. Karkerê bi navê Huseyin Yilmaz her çîqas Kurd be û ji Dersimê hatibe jî, di her firsatê de ew wek Tirk tê xuyakirin. Ti carî behsa Kurdan nayê kirin. Ji xwe Dersim jî wek "Tunceli" tê binavkirin. Kurê Huseyin Yilmaz, bi keçek Alman re zewiciye û dibejin "Em Alman in". Huseyin Yilmaz ê ji Dersimê hatiye jî ji nebiyên xwe re di her firsatê de behsa qehremaniya Tirkan dike û dîroka Tirkbûnê jê re dibêje û ev tişt di fîlm de gelek caran bi awayek faşîzanî hatiye nîşandan. Di fîlm de tenê Kurd hedef nehatine girtin. Alman jî bi xetek zirav hatine rexnekirin û sûçdarkirin. Lê dîsa jî fîlm çawa li Dersimê dest pê dike li wir jî bi dawî dibe. Ji ber ku bav Hüseyin Yılmaz jiyana xwe ji dest dide. Wî dibin cîhê axa bav û kalên wî… Dîsa jî wek Tirkekî wî di gorê de vedişêrin. Duayên xwe jî bi Tirkî dikin. Gelo ev herdu keç bi zanistî ev tişt kirine yan jî bê zanebûn? Em vî tiştî nizanin, lê ya em dizanin ew e ku Kurd dîsa ji aliyê Kurdan ve tune tên hesibandin. Êşa herî giran jî ev e…

## Îhsan Kurt li Swîsreyê kete nav parlamentoya Prilly

# Koçber ji fîgurantiyê derbasî aktoriyê dibin



**Arjin Yaman - Lozan**

Li Swîsrê di 13'ê Adarê de li kantona Vaud hilbijartinên heremî hatin lidarxistin. Ji nava 26 kantonên Swîsreyê tenê li 8 kantona koçberên biyanî dikarin bijêrin û bêne hilbijartin. Li kantona Vaud koçberan di sala 2005'an de bi referandumê mafê bijartin û hilbijartinê standibûn. Kurdistaniyê bi navê Îhsan Kurt ku di nava gelek sazî û rêxistinên ciwakî de li ser pirsgirêk û entegrasyona koçberan xebat meşandine ji partiya sosyalîst bû namzet. Kurt di nava 74 endamên ku ji bo parlamentoyê hatin hilbijartin de serkeftineke balkêş bides xist. Kurt ragihand, ji bo zarokên Kurd bikaribin bi zimanê xwe yê zikmakî perwerdê bibînin û li hemû welatên europa ku Kurd lê dijîn bi nasnameya xwe ya netewî bên naskirin, wê hewldanan bike.

**Ev encam ji bo we tê çi wateyê?**

Ji bo min serkeftinek bû. Di nava 74 kesên ku ji bo parlamentoyê hatin hilbijartin de min di rêza 20.de cihê xwe girt. Ji nava 23 endamên partiya min de jî ez ketim rêza 10. Ev jî elbet berpirsyariyeke mezin dide min.

**Ji bo koçberên li Swîsrê dijîn wateya wê hilbijartinê çi ye?**

Ev hilbijartin bi rastî jî, ji bo koçberan gelek girîng bû. Koçberên li vir tenê ji bo parlamentoyên heremî dikarin mafê xwe yê hilbijartinê bikar bînin. Ev tê çi wateyê? Koçberên li Swîsrê êdi di siyasetê de ji fîgurantiyê derbasî aktorîyê dibin. Ez wisa dinirxînim. Ji ber ku li vir derbasbûna hemwelatiya Swîsrê pir zehmet e. Ji bo hemwelatiya Swîsrê divê tu 12 salan livir bijî, 3 salan jî prosedur didome û dibe 15 sal. Di tevahiya Ewrûpayê de ev standart 7 sal in. Ji bo bi dest xistina mafê siyasetê divê tu 15 salan bisekinî. Li vir tenê mafê bikaranîna dengan heye û divê koçber vî mafê xwe baş bikarbînin. Ger em wusa bikin li vir hêza me wê xurtir bibe. Em ê bikaribin him ji bo çareserkirina pirsgirêkên welatê xwe bibin hêz, him jî em ê bikaribin daxuyaniyên xwe xurtir bidin hikûmet û gelê Swîsrê.

**Ji bo Kurdên li Swîsrê dijîn ev hilbijartin tê çi wateyê?**

Kurdên li Swîsrê dijîn weke hemû Kurdên li Ewrûpa di nifûsê de weke Tirk, Ereb an jî Faris tên binavkirin. Weke netew nayên nasandin. Bi van hilbijartinan Kurd derfetek dibînin ku aktîf beşdarî siyasetê bibin. Bi endamên xwe yên ku him pirsgirêk, çand û dîroka welatê xwe dizane him jî çand, ziman û jiyana Swîsrê dizanin dikarin hêza xwe ya dîasporayê xurt bidin nîşandan. Kurdên dîasporayê pêwîste di siyaseta Ewrûpayê de êdî aktîf cihê xwe bigrin û li ser hukûmetên welatên ku jê hatine bandorê bikin da kû pirsgirêka Kurdan bê çareserkirin.

**Di hilbijartinên 2008'an de we cihê xwe di meclîsa bajêr de girt û cara yekem hûn beşdarî hilbijartinên heremî bûn û serketin. Hûn ê xizmeteke çawa bikin?**

Di nava seksiyona Partiya Sosyalîst de tevî heval û alîkarên xwe em ê hewl bidim ku hejmara kreşan (Bexçeyê zarokan) zêde bikin, zarokên koçber bikaribin bi zimanê xwe yê zikmakî di dibistanan de bixwînin. Koçberên ku weke nivşê despêkê hatin Swîsrê dîplome û perwerdeyê wan ê pişesazî nayên nasandin û qebûl kirin. Em dixwazin ev pirsgirêk bê çareserkirin. Herwiha kesên qezenca wan kême û nikarin ji xwe re xaniyan peyda bikin, ji bo ev bikaribin xaniyên erzan peydabikin em ê xaniyên erzan lê bi qalîte bidin çêkirin.

**Hûn ê xebatên xwe çawa bidomînin?**

Di siyaseta Swîsrê de ketina parlamentoya heremî merhaleya despêkê yê. Lê ji bo mirov karibe di siyaseta giştî de cîh bigire, divê mirov vê merhelê serkeftî derbaz bike. Ez biserketim. Di dema pêş de hilbijartinê hemû kantonan hene. Ji bo pêkanîna projeyên meger partiya min û dengdêr bixwazin ezê karibim hîn pêş de herim.

**Biyografî**

Di sala 1970'an de li Amedê ji dayik bûye. Li Tirkiyê 5 salan rojnamegerî kiriye. Ji sala 1996'an ve li Swîsrê dijî. Li Zaníngehê Lozan û Neuchatel li ser zanistên Sosyolojî û komunîkasyonê Lîsans û master çêkiriye. Di gelek saziyan de li ser koçber û pirçanditiyê kar kiriye. Ji sala 2007'an û vir de di Wezareta Çandî ya Swîsrî de weke pisporê parastina mafê zarok û ciwana dixebite. Li Swîsrê ev 6 sal in bi siyasetê ve mijûl e. Di hilbijartinên 2008'an de kete nav meclîsa bajêr. Herwiha serokê Komeleya Mîrata Çanda Kurdî ya Îsmet Şerîf Wanli ye.

# Şagirt û hezkirên Mihemed Şêxo hatin cem hev

**Barzan Mihemed**
**Ebdûllah Nihêlî**
Hewlêr - Dihok

**Mihemed Şêxo xwediyê 114 stranan e. Li gor rêzkirinek ku helbestvan Edîb Çelkî kirî, ji wan stranan 63 nîştîmanî û şoreşgerî ne.**

Rojên 9 û 10'ê Adarê li salona Pêşew a Hewlêrê festîvala bîranîna hunermendê mezin Mihemed Şêxo hat lidarxistin. Hinek hunermendên Dihokê jiber ku festîval ne li Duhokê hatiye lidarxistin nerazîbûna nîsan dan û gotin, "Piraniya kesên ji Mihemed Şêxo hez dikin, ji Behdînan in." Komîteya Birêvebirina Festîvala Mihemed Şêxo pêşniyar dike ku jiyannameya Şêxo bê nivîsandin û li Hewlêrê peykerek wî bê avakirin.

Ji hundir û derveyê Kurdistanê gelek mêvan ji bo festîvalê hatibûn vexwendin û festîval li ser xerca sermayedarê Kurd Hesen Şengalî hat birêvebirin. Ev cara yekem bû ku sermayedarek Kurd karek bi vî awayî dike. Hejmarek hunermendên navdar beşdarî festîvalê bûbûn, yek ji wan hunermend Birader bû ku ji Hollenda hatibû. Birader ragihand ku wî Hesen Şengalî nedîtiye û tenê ji bo vexwendina vê festîvalê carekê axivîne û got, "Lê karê ku wî ji bo vî hunermendî kiriye, şoreşek bû. Ji ber yekemîn sermayedarê Kurd e ku karek bi vî awayî dike."

### Gazindên Dihokê hene

Hinek hunermendên Dihokê nerazîbûna xwe ji ber cihê lidarxistina festîvalê nîşan dan û gotin, "Divê ev festîval li Dihokê bihata sazkirin." Herwiha Rêveberê Hunera Mûzîkê ya li Dihokê hunermend Emîr Sedîq, bê xeberiya xwe ji sazdana wê festîvalê re nîşan da û got: "Eger ew festîval li Dihokê hatibûya sazkirin, wê gel û hezkiriyên Mihemed Şêxo zêdetir beşdar bibûna, ji ber piraniya kesên ji Mihemed Şêxo hez dikin, ji Behdînan in." Berpirsê Baskê Dihokê yê Sendîkaya Hunermendên Kurdistanê Ziyad Abid jî li gel vê nerînê bû.

Tevî ku koma mûzîkê ya Dihokê ji bo festîvalê hatibû vexwendin, lê wekî serokê wê Cemal Mihemed Edîb dibêje, ji ber sedemên aborî nekaribûn beşdar bibin.

### Tembûra yekê di bin melayê Gund de şikest

Dema ku Mihemed Şêxo li Qamişlo dixwend, di heman demê de xwe fêrî tembûrê dikir. Li wê derê hunermendê Ermen Aram Tîgran nas kir û gelek bandor li ser wî kir. Ji ber hejariyê Şêxo ne dikaribû tembûrekê bikire, lewma gelek caran dema tevlî boneyan dibû, tembûrek ji biraderên xwe werdigirt.

Mamê Mihemed Şêxo, Hûsên Şêxo dartaş bû û ji mûzîkê hez dikir. Rojekê Mihemed Şêxo vedigere gundê xwe û dibîne mamê wî tembûrekê çêdike. Ji biraziyê xwe re dibêje, "Eger tu karibî bi vê tembûrê du stranan bêjî, ez ê wê ji te re diyarî bikim." Mihemed Şêxoyê biçûk bi wê tembûrê çend stranan ji mamê xwe re dibêje û wê tembûrê jê digre. Lê dilxweşbûna bi wê tembûrê dom nekir, gava ew rojekê bi jenîna wê ve mijûl bû, melayê gund hat serdana wan, wî jî ji şerm û rêzgirtinê tembûra xwe veşart. Lê li ser şansê Mihemed, mela li cihê ku wî tembûra veşartibû rûdine, mela pişta xwe dide tembûrê û tembûr dişkê.



### Li çiya çeka Mihemed tembûra wî bû

Mihemed Şêxo di sala 1974'an de çûye nav rêzên şoreşa Kurdistanê. Birayê Mihemed Şêxo, Beha dibêje: "Li çiya jî çeka Mihemed tembûra wî bû." Wekî pêşmerge vedigerin, Mihemed Şêxo di bin bombebarana top û balefirên dijmin, mirovek pir jîr û hişyar bû.



Mihemed Şêxo sala 1983'an vedigere Qamişlo û ji aliyê gelê bajêr ve bi awayek berfireh tê pêşwazîkirin. Lê ji wê demê ve bi berdewam di bin çavdêrî û zordariya dezgehên ewlehiyê yên Sûriyê de bû.

Mihemed Şêxo di sala 1987'an de li Qamişlo bi navê Felek tomargehek ji bo jiyan û belavkirina stranên Kurdî vekir. Lê piştî du mehan, rejîma Sûriye dest danî ser tomargeha wî, Mihemed Şêxo û birayê wî Beha demekê xistin girtîgehê. Herwiha tomargeha wan jî ji bo 5 salan dan girtin.

### Stranên windayî hene

5 bira û 6 xwişkên Mihemed Şêxo hebûn û bi xwe jî birayê mezin bû. Herwiha ji Nesrîn Hesen 3 zarokên wî hene; Berhîm, Birûsk û Felek. Ji bilî birayê wî Beha, niha kurê wî Brahîm jî beşê mûzîkê dixwîne û Birûsk jî stranan dibêje.

Stranên Mihemed Şêxo ne tenê ji bo guhdaran cihê baldayînê bû, herwiha ji bo stranbêjên ciwan jî hê jî dibistanek girîng e. Gelek stranbêjên ciwan stranên Mihemed Şêxo dibêjin.

Mihemed Şêxo xwediyê 14 albûmên tomarkirî ye. Tevî ku baskê Dihokê yê Enstîtûya Kelûpora Kurdî ya ku hunermend Mezher Xaliqî bi rêve dibe, hemû berhemên Mihemed Şêxo belav kirine; lê malbata wî dibêje ew hewl didin ku hemû berhemên wî kom bikin. Beha Şêxo dibêje: "Niha jî hinek stranên winda hene û em li wan digerin."

### Jiyanname û peykerî wî

Serokê Komîteya Birêvebirina Festîvala Mihemed Şêxo, Nûrî Birîmo dibêje: "Pêşniyarek a me ji bo Wezareta Rewşenbîrî û Lawan heye ku, jiyannameya Mihemed Şêxo çap bikin û hemû stranên wî kom bikin."

Herwiha komîteya serpereştiya festîvalê pêşniyar kiriye ku, li Hewlêrê ji bo Mihemed Şêxo peykerek bê avakirin. Beha Şêxo dibêje: "Ev ji bo me serbilindî ye."

Piştî 22 sal ji koçkirina Mihemed Şêxo, ev festîvala yekemîn e ku ji bo wî tê li dar xistin. Her ji ber wê festîvalê jî, kes û karên wî serdana başûrê Kurdistanê kirin. Beha Şêxo dibêje: "Ji bo min serbilindî ye ku li ser parçeyek xaka Kurdistanê ya azad, salvegera Mihemed Şêxo tê bibîranîn. Li beramberî mirovên ku tevlî vê festîvalê bûne, hestên min ji axaftinê bilindtir in."

Mihemed Şêxo (Mihemed Salih Şêx Mûs) di sala 1948'an de li gundê Xecokê yê girêdayî bajarê Qamîşlo li rojavayê Kurdistanê ji dayik bûye. Di sala 1965'an de dest bi karê hunerî kiriye. Tevlî şoreşa Îlonê bûye û piştî têkçûna şoreşê koçê Îranê dibe û jinekê ji bajarê Sine tîne. Di 9'ê Adara 1989'an de li Qamişlo çû ser dilovaniya xwe.









# Li Berlînê hefteya çanda Kurdî!

**Alan Ken** Berlîn

Newroz, li paytextê Almanya Berlînê bi gelek çalakiyên çandî tê pîrozkirin. Organîzasyona van hemû çalakiyan jî komeleyên Kurdan ên Berlînê dikin. Di nav van çalakiyan de, muzîk, nîşana fîlman, defileya kincên Kurdî û gelek çalakiyên din hene.

Bi mebesta Newroza 2011'an li paytextê Almanya Berlînê gelek çalakiyên çandî tên lidarxistin. Çalakî di 8 ê Adarê de dest pê kirin û di 21'e Adarê de jî bi pîrozkirina Newrozê bi dawî dibin. Tiştê herî balkêş ew e ku di organîzasyona hemû çalakiyan de mora hemû komeleyên Kurdan ên li Berlînê heye. Hefteya Çandî di 8'ê Adarê de bi pîrozkirina Roja Jinên Kedkar ên Cîhanê hat destpêkirin. Herwiha di çarçova Hefteya Çandî de defîleyek a kincên Kurdî hat lidarxistin. Di defîleyê de kincên jinên Kurd ên netewî hatin pêşkeşkirin. Di 16'ê Adarê de jî derbarê komkujiya Halepçe de fîlmek hat nişandan û li ser bûyerê seminerek hat lidarxistin.

### Hemû komeleyên Kurd gihan hev

Bernameya Hefteya Çandî di rojên pêş de wê bi çalakî semînerên li ser ziman, pîrozkirina Newrozê û gelek çalakiyên din heta 21'ê Adarê berdewam bike. Çalakî ji aliyê Kurdên Berlînê ve bi eleqe tên pêşwazîkirin. Bi mebesta Hefteya Çandî de Komîteya Amadekar, daxuyaniyek belav kir. Di daxuyaniyê de hat ziman ku, "Her sal çalakiyên wusa dihatin amadekirin. Lê îsal jî her sal cudatire. Ji ber ku, îsal di organîzasyonê de hemû komel û rêxistinên Kurdan hene. Ev tiştek gelek kêfxweş û pîroz e."

Komele û rêxistinên ku di amadekariya Hefteya Çandî ya Berlînê de cîh digirin ev in: Awadanî, Bûn, Hoybun-Komal, KNK-Berlîn, İKK, Komcîwan-Berlîn, Navenda Zanîna Alman û Mezopotamya, Komela Çand û Alîkariya Kurdîstan, Mizgefta Kurd, CÎK-Berlin, Navenda Kurdan, Mala Gele Kurdîstan, Sozk, Yekîtiya Doktorên Kurd li Almanya, Komeleyên Kurd ên Suriye-Berlîn, Yek-Mal, Yekitiya Komeleyên Kurd Berlin- Brandenburg.

## PIRTÛK

# Ger Qerejdax rabe, wê çi bike Derya Reş?

**Mehmet Sebatli**

Mirov û bajar gelek caran dişibin hevdu. Çawa ku karakterê mirovan heye, yê bajaran jî heye. Herwiha her bajarek xwediyê temenekî û bejnekê ye. Şibandina wan ne tenê ev in: Her mirovek dişibe erda ku li wir hatiye dinê, ango welat, bajar û herêma xwe. Li kê dinerin binerin, di rûyê wî de şopên welatê wî hene.

Çendek berê pirtûkek helbestan ku navê bajarek mezin lê hatiye kirin, kete destê min. Ev pirtûka ku ji 5 beşan pêk tê, her beşek bi tîpek ji navê vî bajarî hatiye destnîşankirin. Nivîskarê pirtûkê Tewfik Hêja niha di zindana Boluyê de ye.

Ji zindanan gelek berhem digihîn der, lê gelek caran ji ber ku nikarin rewşa derve objektîf bidin xuyakirin, zêde bal nakişînin. Lê di wêjeya mirovahiyê de gelek berhemên navdar hene ku ji zindanan derketine. 'De Profundis' a Oscar Wilde, 'Rê' ya Yilmaz Guney, 'Destana Şêx Bedreddin' a Nazim Hikmet û hwd. Pirtûka helbestan a Tewfik Hêja ya ku navê bajarek Kurdistanê li xwe kiriye, di destpêkê de danasînekê dike. Ango bajar bi xwe diaxive: "Temenê min ne bi sal û zemanê mirovan e; bi bêgorniya behrên mirî, bi dirêjiya porê heyvê, bi tundiya teqînên Sîpan û Etnayê; bi kezebşewitiya dayîkên ku keç û kurên wan qet li wan venagerin û bi xunava ser pelga gulek sor, ku rengê xwe yê xwînî ji bilbila çîroka Oscar Wilde wergirtiye bihesibînin... An jî hûn karin rapêçîna Erebên zorker û pênc meh berxwedana (...) Meryem Dara Xatûnê bi pênc km û nîv dirêjiya bejna min re lêk bidin, dîmena sêdarên 1925'an û hejmara gerîlayên çavên wan bi erxewaniya kevirên min bûbe.. "

Gelo we ev bajar nas kir? Na?

Em dom bikin: "Deng û bînayên min di fetlokên bedena xwe de hewandine... şopa lingên şerabxurên sergerde, azana melayên salih, çingîniya dêrên jibîrbûyî, xarên zarokên kirîvên Ermen, Keldan û Suryaniyan... "

Eger we dîsa nas nekiribe, mînaka herî dawî: "Ne hemû çiya, tenê Qerejdax rabe ser piya û bimeşe, wê çi were serê Behra Reş û Behra Spî?.. "

Amed!

**Amed bê zebeş nabe. Ava sûsê, lema zebeşê, çingîna tasikên elemyon... Serê şûrê Selahedînê kurê Eyûbî...**




### Organên bajêr diaxivin

Dema ku peyv di helbestê de li cîh bên danîn, dibin wek kevirên stûnên dîwaran. Dema ku rûpelên pirtûkên tên qelibandin dengê çi nayê... Dengê xîçika nava çem, dengê rezan, dengê Minareya Çarling, Saeta Rojê, Pira Dehderî, Çarşiya Şewitî, Gora Xançepekê, Kuçeyên bangîn û Dîjle. Ev organên bajêr in. Ew carina bi hev re diyalog dikin, carna bi xwe re monolog dikin û carna jî bi xwendevanan re diaxivin. Û bi vî rengî hûn dikevin nava dilê vî bajarî.

Tewfîq Hêja, we tenê di nava kuçe û dîroka nêz û dûr a Amedê de nagerîne; piştê demekê we ji bajêr derdixe û dibe gera cîhanê. Ji bo vê yekê, jê re "Rê" lazim e. Paşê em diyaloga di navbera "Rê û Kurmoriyê" de, dişopînin. Ev rê digihê heta Romayê. Peyvên Tewfîq Hêja we ji serxeta têkçûnan derdixin, dibin heta Madagaskara Zeryayan û nava çermesorkên Amazonê. Helbest li ser Amedê bin û tê de zindan û Newroz tunebin, nabe. Di nava dengan de Co jî heye. Co kûçikê Esat Oktay Yildran bû, ku ev qûmandanê nijadperest pê êrîş dibir ser girtîyên Zindana Amedê. Nêçirvanê peyvan Tewfîq beriya we bibe nava coşa Newrozê wiha direqisîne peyvan: "A(v)dar, Ava vedikişe rehên darê... û dest didin hev Amed, Hewlêr û Sine."

Amed bê zebeş nabe. "Ava sûsê, lema zebeşê, çingîna tasikên elemyon... Serê şûrê Selahedînê kurê Eyûbî... "

Pir bi wate ye dema ku bajarek bi zimanê gelê wî bajarî bê nasandin. Ji goreke Xançepekê dengê Ermeniyekî ku bi tirkiya Amedê diaxive, navê der û cihan dema hemû bi kurdî bin û xortekî ji vî bajarî hêrs bibe û wiha biqîre: "... û bang dikim, îşev navê Diyarbakirê didim marê Ziya û Gokalpan, îşev xwe bi qurbana Ameda Kurdan dikim!"

*A ME DÊ, Tewfîq Hêja, Weşanên Aram, 2010.*

## Roj naxwaze vegere Ewrûpa

# “Ez amade me li Kurdistanê karê teksîtiyê bikim”



**Hewlêr (Rûdaw) -** Stranbêj Roj Kerîm bi niyet e ku bi awayek herdemî li Kurdistanê bimîne û venegere Ewrûpa. Ew amade ye bibe şofêrê teksiyê.

Ev demeke stranbêj Roj Kerîm bi serdanekê vegeriyaye Kurdistanê û bi niyet e serdana vê carê bike herdemî. “Ya niha ez fikra wê dikim, li Kurdistanê dîtina karekê ye ji bo pê jiyan bikim. Ji ber niha li Kurdistanê jî jiyan zehmet bûye û pêwîst e mirov kar bik, ango pêwîstî bi xwedîkirinê heye.”

Roj Kerîm derbarê karê ku li Kurdistanê li pey digere, ji Rûdawê re got: “Ew karê ez bikim ji bo xwedîkirina xwe, mal û zarokên min e. Ne şert e karek nêzî hunerê be, eger karekî din be jî amade me bikim û li gel min qet ne şerm e.”

Roj li Swêdê çend salan şofêrê teksiyê bû, gelek caran ji êvarê heta sibehê teksî ajotiye. “Li vê derê jî eger ti karek neket destê min, amade me bibim şofêrê teksiyê. Şofêrê teksiyan jî wekî me mirov in, xizim û mirovên vî welatî ne.”

Roj Kerîm ji sala 2004’an ve ti albumek a stranan belav nekiriye û derbarê berhema xwe ya nû de got: “Min çend stran bi awayê single berhemaniye û kiriye klîb. Niha jî min amadekariyên albumek nû qedandiye û ji 12 stranan pêktê. Eger li gel şîrketekê peyman deynim, ez ê di demek nêzîk de belav bikim.”



# Deniz û Emel duet dikin



Hip-Hopvan a Kurd Dezz Deniz û stranbêja Tûnisî Emel Mathlouthi straneke kurdî bi hev re dibêjin.



Dezz Deniz ev sê sal in ku amadekariya albuma xwe ya duyem dike. Dezz Deniz bo Rûdawê ragihand ku ew gihaye dawiya albuma xwe û niha bi çendîn fîrmeyan re ji bo weşana albuma xwe danûstandinê dike.

Derbarê navê albumê û kengê bê weşandin de Deniz ti agahî neda, lê got ku albuma wê pir zimanî ye û got. “Ji bilî kurmancî, ez bi zazakî û soranî jî distirim. Herwiha di stranan de car caran bi tirkî, almanî, fransî û îngilîzî jî distirim. Emel Mathlouthi jî bi min re di straneke kurdî de duetê dike. Ez deng û şîroveya Emelê pir diecibînim.”

Emel Mathlouthi wek tê zanîn strana Mihemedo bi kurdî gotibû û pir hatibû ecibandin.

# Loke û Mîre strana serxwebûna Kurdistanê dibêjin



**Hewlêr (Rûdaw) –** Herdu stranbêj Loke û Mîre, ji bo serxwebûna Kurdistanê stranekê dibêjin.

Loke Zahir û Mîre niha stranekê bi navê Serxwebûn tomar dikin, ku gotinên wê ji aliyê Mihemed Hacî Qadir hatine nivîsandin û Helkewt Zahir awaza wê daniye.

Di çend rojên bê de karên vê stranê bidawî tînin û stran tê belavkirin.

## facebook bû 7 salî

Malpera parvekirina civakî Facebook, kete sala xwe ya 7’an. Nihal li seranserê cîhanê Facebook bi 76 zimanan tê bikaranîn, kurdî jî di nav de ye.

Li gor lêkolîneke nû ji 13 kesan yek xwe di Facebookê de tomar kiriye. Bikarhênerê herî temen mezin Lilian Lowe a 104 salî ye. Lowe li ser Facebookê bi neviyên xwe re dide û distîne.

Facebook di xwepêşandanê welatên Ereban de pir bi çalak hat bikaranîn. Mirovekî ji Misrê yê bi navê Cemal Îbrahîm navê keça xwe ya ku çend roj berê hat dinyayê danî Facebook. Di motora gerînê Google de ji sedî 2 kes lêpirsîna Facebookê dikin.

### Li gor pisporan li Tirkiyê "qirkirina zayentî" pêk tê

# Dewlet sersar nebe kuştin zêde nabin



Mutha Çetin

Li Tirkiyê ji ber sersariya dewletê her rojê nêzî 5 jin tên kuştin. Saziyên dewletê serlêdanên saziyên jinan bê bersîv dihêlin. Xebatkara Veqfa Stargeha Jinan a Mor Çati Ulfet Tayli, diyar kir ku ger zagon hatibûna guhertin û dewletê jin biparastina, wê gelek jin nehatina kuştin.

Li Tirkiyê li gel jinên ku rastî şîdet û gefan tên serî li polîs, dozgerî û rayedarên dewletê didin jî, dîsa nayên parastin û rojê nêzî 5 jin ji aliyê zilaman ve tên kuştin. Ji ber sersariya dewletê li Tirkiyê "qirkirina zayentî" pêk tê. Saziyên jinan jî diyar dikin ku ji ber piştgirî û alîkariyê ji dewletê nagirin, nikarin jinan biparêzin. Di derbarê mijarê deRêvebera Komeleya Jinan Gokkuşagi Nazmiye Ulker û xebatkara Veqfa Stargeha Jinan a Mor Çati Ulfet Tayli, ragihandin ku ji ber helwesta polîs û dozgeran, jin tên kuştin û li welatekî wek Tirkiyê ku 70 mîlyon nifûsa wê heye, tenê 65 stargeh hene.

Rêvebera Gokkuşagi Nazmiye Ulker, diyar kir ku jinên serî li polîs û dozgeriyê didin nayên parastin û piştî 24 saet şûn de wan dişînin mala wan. Ulker, anî zimên ku jinên serî li li komeleya wan didin, ji ber ku derfetên wan kêm e, nikarin wan biparêzin dişînin cem xizmên wan. “Polîs û dozgerî ji ber ku şîdetê wek şikandin, reşkirin û kuştinê dinirxînin, dema jinên rastî şîdetê tên û serî dozgeriyê didin jî rastî bersîva 'ka tiştek bi laşê wê nehatiye tên.”

### Jinên Kurd ji ber tirkî nizanin serî li rayedaran nadin

Ulker, anî zimên ku piraniya jinên Kurd ên koçber ji ber bi tirkî nizanin serî li rayedarên dewletê nadin û wiha got: "Jinên Kurd ji ber bi tirkî nizanin serî li polîs û dozgeriyê nadin. Tên serî li me didin û em alîkariya wan dikin. Bi taybetî piştî hikûmeta AKP'ê şîdeta li dijî jinan zêde bû. Her çend AKP bi parastina jinan pesnê xwe dibe jî hejmara stargehên jinan û îstatîstîkên kuştina jinan vê propagandayê rast dernaxe.”

### Divê stargeha jinan bidin saziyên jinan

Xebatkara Vakfa Stargeha Jinan a Mor Çati Ulfet Tayli jî, diyar kir ku eger zagon hatibûna guhertin û dewletê jin parastibûna îro wê gelek jin sax bûna. Tayli, anî zimên ku niha bi derfetên xwe û bi alîkariya hiqûqnas, civaknas alîkariyê û piştgiriyê didin jinan. Tayli, da zanîn ku tenê di sala 2010'an de hezar û 300 jinan serî li saziya wan daye. “Her çend qeymeqamî, polîs û şaredarî hebin jî ji ber ku li wir nayên parastin serî li me didin. Li gel nifûsa Tirkiyê ya 70 milyonî tenê 65 stargeh hene.”

Tayli, destnîşan kir ku hejmara 4320 a zagona parastina malbatê ji bo jinan awantaj e û wiha dawî li axaftina xwe anî: “Li gor vê zagonê, zilamê ku şîdetê li dijî jinê pêk tîne ji malê tê dûrxistin. Lê mixabin ev zagon pêk nayê. Ev zagon tenê li ser kaxizê dimîne.”

**Nifûsa Tirkiyê 70 mîlyon e, lê tenê 65 stargehên jinan hene**


Ulfet Tayli

**Jinên ku serî li polîs û dozger didin nayên parastin û şûn de tên vegerandin**


Nazmiye Ulker

# Sê sal in li jin û keça xwe digere

Ferman Çomanî

Ev sê sal in dayika bi navê Rûnak Xidir (33) û keça wê Seylan Enwer a temenê 11 sal wendayî ne. Hevserê Rûnak dibêje ku cih nemaye ew bi dûv wan de geriyaye û sê sal in jiyana wî nemaye. Niha bi tometa kuştina vê dayik û keçê, sê kes ji aliyê asayişên Raniya hatine girtin.

Enwer Hemedemîn Mihemed (44) ku daniştvanê bajarokê Seruçawe ye, çîroka wendabûna keç û jina xwe ji bo Rûdawê vegot: "Berî 3 salan mala min li Hacîawa bû, hevjîna min di rêxistinên PDK’ê de kar dikir. Rojekê hevjîna min çû Raniya, li wir sê jin rêkxistibûn, çû wêne û kopiya nasnameya wan ji wan werbigre, ez jî çûm gundê Şêx Wesanan ku erzaqên xwe yên mehane werbigirim. Gava hatim saet 4’ê êvarê bû, hevjîna min hê nehatibû. Min wisa bawer kir ku çûye mala dayika xwe a li Raniya, wê şevê li bendê mam, lê nehat û telefona wê ya mobil jî girtî bû. Sibehê ligel dostekî xwe çûm buroya PDK’ê li Raniya û mala dayika wê, lê ne li wir bûn."

Ji roja ku jin û keça wî wenda bûn, Enwer li wan digere û saloxa wan dike: "Cihê dawî ku Rûnak û Seylan lê hatine dîtin mala jinek Ereb bi navê Semîre bû. Bi mebesta rêxistinkirinê diçû ba wê û dihat û li wir saet 3 telefonek jê re hatibû û gotibû diçim navê wan jinan dinivîsim. Dû re telefona wê tê girtin.

Piştî diyarnemana vê dayik û keça wê, sê kesên gumanlêkirî hatin girtin, ku niha di zindana asayişa Raperîn de ne. Enwer derbarê girtina van 3 kesan de wiha dibêje: "Asayiş wêneyê jin û keça min bir û pêşanî van hersê kesan da, ew jî mikur hatin ku bi keviran li Banueqel kuştine. Wan jî bo zêran kuştine, 30 mîsqal zêr bi jina min ve bûn."

### Kurê wî jî hatiye kuştin

Ti gumanên Enwer ji hevjîna wî nîne: "Rûnak pir baş û dilsoz bû, piştrast im îxanet li min nekiriye. Bi cilên asayî derket derve." Enwer eşkere jî kir ku berî hevjina wî û keça wî wenda bibin, kurekî wî hatiye kuştin: "Kurê min temenê wî 11 sal bûn, di hembêza dayika xwe de razayî bû, di hundirê mala min de 9 gulle lêdan û kuştin, ti kes nizane kê ew kuşt."

Çavkaniyekê ji beşê lêkolînê yê asayişa Raperîn, li ser wendabûna dayik û keçê ji Rûdawê re got: "Piştî ku nûçeya wendabûna Rûnak Xidir û Seylan Enwer gihişte me, me di 12’ê Cotmeha 2009’an de ji bo wan dosyayek taybet vekir û li dijî tometbar N.M.H fermana girtinê derxist. Dûre ev kes li tawana xwe mikur hat û got 3 kesên din jî ligel min hebûn B.M.K, M.E.U û M.M, dûre du ji wan kesan jî hatin girtin."

Vê çavkaniyê jî got tometbarê serekî ku M.M.e heta niha nehatiye girtin, lê kesên din gotinên wan weke hev in û karên berê jî kirine û li ser diziyê hatine girtin, ku B. bi 15 mehan û M.E. jî bi salek zindanê hatine mahkûmkirin. N. di lêkolînê de mikur hatiye ku destdirêjî biriye ser wê dayik û keça wê ya 11 salî û dû re ew kuştine.

### Şêxekî pere jê distîne, lê jin û keça wî nabîne

Her çiqasî li gor mikurhatinên van hersê kesan, dayik û keç hatine kuştin jî, lê heta niha termên wan ne xuya ne. Enwer dibêje: "Li her derê li wan geriyam, çûme sitargehên jinan û Qendîlê ba PKK’ê jî, lê ne liwir bûn. Min serdana şêxekî kir ku wan ji min re bibîne û pereyek zêde jî ji min stand, lê bêsûd bû. Min ev hemû ji bo dîtina serê ta kir ji ber dixwazim êdî di bendewariyê de nejîm û bizanim mane yan na."

Li gor daxuyaniya yek ji girtiyên vê dosyayê Rûnak bi mêrekî re (H.S.) reviyaye, lê Enwer dibêje: "Ti kesekî bi fermî ev ji min re negotiye û bawer jî nakim wisa be."

Enwer tenê karîbû 2 salan li benda hatina jina xwe bimîne, jineke din anî: "Neçar bûm jinê bînim, bavê min li ser cihan e û zarokekî min ê kêmendam jî heye, lê heta niha min girêbesta hevsergîriyê nekiriye."

Rêveberê giştî yê şirketa Korek Sîrwan Barzanî, ev cara yekem e hevpeyvînek rojnamevanî dike. Sîrwan Barzanî di vê hevpeyvînê de li gel Rûdawê, ku bi awayê pirs û bersivê bi awayekî nivîsandî hatiye kirin, dibêje, "Aborî û bazirganî bê girêdana bi gel û welat ve dikeve çarçoveya egoîzmek têkder". Herwiha Barzanî radigihîne ku şirketa Korek Telecom ne şirketa wî û PDK'ê ye, lê şirketa 4 kesan e ku ew yek ji wan e. Barzanî destnîşan dike ku ew dikare tevî karê xwe yê bazirganî di siyasetê de jî xizmetek zêdetir bike.



# Rêveberê giştî yê şîrketa Korek, Sîrwan Barzanî:

# Aborî movika pişta siyaset û pêşketinê ye

## Ez bawerim tevî karê xwe yê bazirganî dikarim di warê siyasî de jî kar bikim û bi çavê hêviyê li peşeroja xwe ya siyasî dinêrim

**Rûdaw: Bazirganî û siyaset li gor we di çi de digihin hev û di çi de ji hev cuda dibin?**

Sîrwan Barzanî: Bawer dikim mebesta we ne bazirganî û siyaset, lê aborî û siyaset e. Bi baweriya min, li gel ku hevgirtin û cudabûna van herdu aliyan bi qonaxa ku welat, netew an bizava ew tê re derbas dibe ve girêdayî ne, lê bi awayekî giştî di her wext û demekê de be. Aborî bihêztirîn faktora movika pişta siyasetê ye da ku ji bo bicîgihandina her proseyek siyasî pişta xwe pê girê bide. Pêşkeftina welat di her warî de (civakî, zanistî, hunerî û siyasî) jî rasterast bi astê serkeftina aborî û çawaniya reftarkirinê li gel rewşa bazirganî ve girêdayî ye. Bi awayekî giştî ji bilî vê ti şoreşek an bizavek di vê serdemê de bê piştgiriyek bi hêz a aborî bi ser nakeve û armancên xwe pêk nayîne. Loma bawer dikim xala xurt a hevgirtina van herdu aliyan xizmetkirina welat û niştiman e, ji ber aborî û bazirganî bê girêdana bi gel û welat ve dikeve çarçoveya egoîzmek têkder.

**Gelek bazirgan ku tevî siyasetê dibin, hewl didin ku ji têkilî û berpirsiyariya rasterast a siyasî derkevin. Hûn di kongreya 13'an a PDK'ê de hatin nav berpirsiyariya siyasî, sedem çi bû?**

Siyasetvan wê demê serkeftîtir dibe eger hêzeke wî ya aborî û bazirganî yan akademîk hebe. Li gor min, ev li hinek welatên pêşketî ji bo kesên di siyasetê de dibin berbijêr, wek şertekî tê dîtin. Ez bawer dikim ku dikarim tevî karê xwe yê bazirganî di siyasetê de jî xizmetek zêdetir bikim. Eger berê wek kadroyekî siyasî nehatibim naskirin jî, lê qet ji siyasetê veneqetiyame. Bawer dikim ger her sermayedar pereyên xwe di projeyên xizmetguzarî û xweşikkirina welatê xwe de bikar bîne ev e, ruh û naveroka meşandina siyasetek erênî ye ji derveyî her îdeolojiyek hizbî wek ku berê me kiriye. Ji bilî şîrketa Korek Telecom. Bajarekî wek Hewlêrê cihekî lîstinê lê nebû. Mînak damezrandina Family Fun bû cihek ne ku bi tenê xelkê Hewlêrê lê ji seranserê Iraqê xelk serdana wê dikin û bûye cihê serfiraziya me û bajêr, ev ji bilî sûka hevdem Family Mall, herwiha projeyên ji bo hevkariya jêrxana aborî wek kargeha şîşan ku ji bo cara yekem sektora taybet berhem tîne û madeyên seretayî ji paşma û hesinê kevin pêk tê. Karekî din ê hêja ji bo bajarê Hewlêrê projeya Kurdistan Tower e ya li taxa Bextiyarî. Ev proje bi pişka zêdetir a sermaya berhemhênerên biyanî ne. Em serbilind in ku me baweriya sermayedarên biyanî kişand Kurdistanê.

**Bi dîtina we, bi wergirtina berpirsiyariya di serokatiya PDK'ê de hûn dikarin çi tiştekî zêdetir ji PDK'ê re bikin?**

Pêwîstiya PDK'ê wek her partiyekê bi guherîn û ramanên nû û pratîkek hevdem heye. Dema guherînên serdemê û awayê nû yê jiyanê ye. Ev çend sal in tevî hemû hewldanên neyaran ber bi pêş pêngav avêtine û eşkere ye jî pişka şêr ji van pêşkeftinan ji PDK û serokê wê re dikevin. PDK ji xala haydarbûna wê ji jiyana nû ya siyasî, aborî û civakî kongreya xwe saz kir û birêvebiriya xwe nû kir da ku ne ku li gel pêwîstiyên niha pêngavan bavêje, lê wan pêş jî bixe û ne ku tenê ji bo niha kar bike, lê plana wê ya xurt ji bo pêşerojê hebe. Loma pêdiviya vê siyasetê û di warên cuda yên jiyanê de bi kesên pispor û jêhatî heye û berî hemûyan li gor min warê aborî bi giştî û teknolojiya bi taybetî tê. Lewra bi çavê hêviyê berê xwe didim pêşeroja xwe ya siyasî.

**Şirketa Korek yek ji şirketên navdar ên Kurdistanê ye. Gelo ev şirketa we ye yan jî şirketa PDK'ê yan jî hûn jî xwediyê beşek wê ne?**

Şirketa Korek ne şirketa PDK yan ya min e, lê ya min û 3 kesên din e

Giringiya projeyekê di rêjeya sûdwergirtina hevwelatiyan de tê ditin, nekû xwediyê wê kî ye. Lê eger bersiv ji bo we gelek bi mebestdar be, ez vê yekê ji we re dibêjim ku şirket heta niha şirketek navxweyî ye û para 4 kesan di nav de heye. Ez yek ji wan im, yên din jî take kes in û têkilî ya wan bi PDK'ê ve nîne. Hûn dikarin serdana rêveberiya giştî ya tomara şirketên herêmê bikin. Şirîkên min ne bazirganên navdar in, di her destpêka karkirinê de me bi sîstemek biçûk û sermayeyek pir kêm dest bi kar kir.

### Bazirganî bê girêdana bi gel û welat ve dikeve qalibê egoîzmek têkder

**Li gor zanyariyên me li Bexda û bajarên din daxwaz li ser tevlêbûna Korekê heye, lê hûn di zêdekirina tevlêbûn û danîna şebekeyan de sist in; çima?**

Pirs ne sistî ye, em dixwazin karê bi rêkûpêkî û xizmetkirina bi kalîteyên bilind pêşkêş bikin. Em dersê ji kêmasiya şirketên din wergirin û dubare nekin. Niha li Bexdayê jî em wek pêwîst xizmetê pêşkêş dikin. Ji ber vê yekê jî dema wê yekê hatiye ku em bi tevayî rabigihînin ku hebûna me ya li wê derê hebûnek bazirganî ye.

**Ji bo ciwanan û hunerê televizyonek we ya hunerî heye û hûn di warê werzişî de sponsoriya rojnameya Kurdistanê ya herî mezin Rûdawê dikin; hûn ji bo ciwanan dixwazin çi dikin?**

Huner û hunermend li Herêma Kurdistanê û li welatên hawîrdor jî, nemaze çar welatên cîran, guhdana pêwîst nedîtine û pêşde neçûne. Karên me li gel vê çînê gavek ji bo pêşdebirinê û ji bo parastina çand û kesayetiya gelê Kurd faktorek e. Ciwan jî çînek aktîv ya her civakekê ye, lewma em li gel wan her hevsoz bûn. Me hewl daye ku girîngiyê bidin pêwîstiyên wan û em timî amade ne ku di vî warî de xizmeta gelê xwe bikin.

### Me gelek karên xêrxwazî kirine, lê di ragehandinê de me giringî nedaye wan

**Korek bacê dide Hikûmeta Herêma Kurdistanê yan jî Îraqê?**

Pêwîst dibînim li ser vê yekê daxuyaniyekê bidim. Baca Korekê di sê rêya de tê belavkirin. Di serî de pereyên moletdayînê ku 1 milyar û 250 milyon Dolar e û divê di ser çar salan e bên dayîn. Herwiha ji 15% ji qezencê diçe ji bo desteya ragihandin û geyandina Iraqê û %15'ên din jî bo rêveberiya Bac û Deramet a Herêma Kurdistanê diçin. Di dawiyê de sîstema darayî ya Îraqê li gel Herêma Kurdistanê girêdaye û ji sedî 17'ê budçeya Herêma Kurdistanê didê.

**Korek karê xizmetguzariyê dike?**

Me gelek karên xêrxwaziyê kirine, lê di ragihandinê de me giringî ne daye wê. Ji ber ew karê xêrê bû û me nexwest wî kesî yan aliyî di ragihandinê de nîşan bidin. Ji bo pêşerojê jî dibe siyasetên nû bên pêş.

**Gelek bazirgan di şîrketan de ji kûrahî û girêdanên partî û berpirsiyaran gazinc dikin, di vê derbarê de nerîna we çi ye?**

Eger bazirgan û sermayedar girêdayî aliyê hizbî ne, ev tiştek cuda ye. Ji ber ku kêm car heye ku xelk bê alî bin, bi taybet jî di vê navçeyê de. Lê ev nayê wê wateyê ku ev malê hizb e.

**Di qûnaxa binyatdanîna her welatekî de bazirgan û sermayedar dibin sembola hezkirina navbera gel, lê bazirganên Kurdistanî timî xwe vedişartin. Sedema vê yekê çi ye?**

Ez bawerim, tevî karê xwe yê bazirganî dikarim xizmeteke zêdetir di warê siyasî de bikim.

Gelek bazirgan hene ku di nava gel de tên hezkirin. Ji ber ku di pêşxistin, bihêzkirin û avakirina herêmê de rolek berçav leyîstine. Lê ne eşkere ye ku li navçeyên Rojhilata Navîn fikra komunîstî gelek bandora wê hebû û hê jî bermayên wê mane. Hinek kes hene di wê baweriyê de ne ku sermayedar û kesên hilberînê dikin, bi tevayî berevajî rast e. Ti welatek bêyî ku derfetên baş ji bo sermayeguzeriyê diyar bikin, pêş nakeve.

*Hewlêr (Rûdaw)*




## ket nav bazara Îraqê

Eşkere ye ku şirketa me yek ji wan 3 şirketên ku moletê karkirinê li seranserî Îraqê ji Tebaxa 2007'an ve bi dema 15 salan bi dest xistine. Bi rêya tenderek eşkere ku li Emmanê bi rêve çû, me moletê karkirinê bi 1 milyar û 250 milyon dolar wergirt. Hûn jî dizanin ku torên me tenê li sê parêzgehan hebûn; Hewlêr, Dihok û Silêmanî. 15 parêzgehên din jî cih û bazarên nû ne û li gor peymana navbera şirketa, di desteya ragihandin û geyandina Îraqê de, pêwîst e xizmetguzarî bigihin hemû hevwelatiyên li seranserê navçeyên Îraqê. Ev jî ne karekî asan e, çi di rûyê teknîkî de be û çi jî di rûyê darayî de, bi taybet jî ya duwemîn. Lewma daxwaza çend aliyan hebû ji bo wek şirîk li gel me kar bikin. Danûstandinên me hene, ji bilî France Telecom, hinek şirketên din jî hene ku em pir nêzî hev in. Tiştek wisa li gel France Telecom nemaye û em gihane qûnaxa dawî.

# Dîlok ji 6 bajaran zêdetir dixwe!

▶Îhracata Dîlokê ji 6 bajarên Kurdan ên din zêdetir e

▶Eger proje bi dawî bibin wê aboriya Amedê mezin bibe

Bawer Çem Amed

Digel ku Amed tenê 3 saet dûrî Dîlokê ye jî, di warê pîşesazî, aborî û bazirganiyê de 30 sal li pey Dîlokê ye. Li gorî daneyên meha sibata 2011'an li bajarên Kurdan 986 milyon Dolar îhracat hatiye kirin. Di vê îhracatê de 736 milyon Dolar para Dîlokê ket. Para Mêrdîn, Amed, Ruha, Meraş, Cizîr û Meletî jî 250 milyon Dolar ket. Yanî pariyê herî mezin para Dîlokê ket.

Li gorî daneyên Saziya Statîstîkê ya Tirkiyeyê, li Tirkiyeyê ji her 5 kesan kesek betal e. Otorîteyên aborî yên li Tirkiyê vê tabloyê weke cihê kêfxweşiyê dibînin û dibêjin ku Tirkiye ber bi aramiya aborî ve diçe. Ji bo rojhilatê Tirkiyê dibe ku wisa be lê li Bakurê Kurdistanê rewş qet ne wisa ye. Tenê li Amedê ji her 100 kesî 60 kes betal in. Digel ku Amed navenda siyaseta kurdan e jî di warê aboriyê de hema hema di bin sifirê de ye.

### Gepa mezin Dîlok dixwe

Li Amedê Herêma Pîşesaziya Organîze ku di 1996'an de hate avakirin, navenda herî mezin a bajêr e. Lê li vir 120 fîrma dixebitin, 40 fîrma hê di asta înşeatê de ne, 39 f îrma jî tenê li ser projeyê hene. Li vir bi giştî 199 fîrma hene. Dema mirov li van reqeman dinêre, mirov dibêje qey digel pêşneketina aboriya Amedê ev hejmara fîrmayan pir zêde ye. Lê di rastiya xwe de ne wisa ne. Çimkî 120 fîrma aktîf in. Ji van 14 heb a çirçir û rûnê xam e. Ji ber vê yekê jî ev fîrma tenê demdemî dixebitin û yên mayî jî bi kapasîteyeke tam naxebitin. Ji van tenê hejmareke kêm bi kapasîteya tam dixebitin. Ev tabloya reşbîn a aboriya pîşesaziya Amedê, xwe di daneyên berbiçav ê îxracatê de pir aşkera dide der. Li gorî daneyên sibata 2011'an ku Rûdawê ji Yekîtiya Îhracatvanên Başûrê Rojhilatê Anatolyayê (GAÎB) wergirt, payê herî zêde yê îhracatê bajarê Dîlokê digre. Li gorî van daneyan di meha sibata 2011'an de li Dîlok, Mêrdîn, Amed, Cizîr, Meraş, Meletî û Ruhayê 986 milyon û 553 hezar dolar îhracat pêk hat. Ji van pereyan tam 736 milyon û 849 hezar dolar ji Dîlokê re çû. Yanî Dîlokê ji 986 milyon dolarî tam 736 milyon dolar xiste berîka xwe û 250 milyon dolarê heyî jî di nava Amed, Mêrdîn, Cizîr, Meraş, Meletî û Ruhayê de hate parvekirin. Li gorî daneyên GAÎB'ê di îhracata herêmeke Bakurê Kurdistanê de herî zêde berên tekstîl, xalîçe, hibûbat, fêkiyên hişk, berên avê û yên heywanan tên îhraçkirin. Îraq û bi taybetî jî Herêma Kurdistanê serkêşiya vê îhracatê dike. Piştî Herêma Kurdistanê Îtalya, Suriye, Erebistan û Almanya tê.



### 'Amed 30 sal li pey Dîlokê ye'

Serokê Komeleya Karsaz û Pîşesaziyên Başûrê Rojhilat (GUNSİAD) Şah Îsmaîl Bedirhanoglu daneyên GAÎB'ê ji Rûdawê re şîrove kir. Bedirhanoglu, diyar kir ku li Dîlokê ji meqarneyan heta sabûnê berên cur be cur tên hilberandin û di vî warî de Amed hema hema 30 sal li pey Dîlokê ye. Li gorî Bedirhanoglu, şer û pevçûnên ku ev 30 sal in li Bakurê Kurdistanê didomin, bandoreke neyînî li bazirganiya Amedê kir. Bedirhanoglu, bal kişand ku piraniya îhracata Amedê li Herêma Kurdistanê çêdibe û ji îhracata ku tê kirin ji sedî 50 mermer e.

Bedirhanoglu, bi bîr xist ku Amed berê navenda bazirganiyê bûye û wiha axivî: "Lê mixabin pîşesaziya Amedê pir qels maye. Meqesa di navbera pîşesaziya Amed û Dîlokê de her diçe firehtir dibe. Ji bo ku ev meqes bê girtin, divê em potansiyelên aboriyê yên Amedê derxin holê. Ji bo vê yekê jî divê plana çalakiyê ya GAP'ê biqede, qenalên avê bikevin meriyetê, cotkarî, çandinî û tekstîl bi pêş bikeve. Ger ev hemû tişt bêne kirin, ez bawer im ku wê Amed bigihije asta xwe ya berê ya bazirganiyê. Bi vê yekê re dê Amed bibe navenda gelek tiştên din jî."

Rêveberiya Geştûguzarê li Silêmaniyê:

## Îsal hatina tûrîstan bo Silêmaniyê sifir e



▶Li gor sala par ji Başmaxê gelek kêm tûrîst tên Silêmaniyê

▶Berpirsên tûrîzme jiber xwepêşandanên Silêmaniyê bawer nakin ku îsal zêde tûrîst ji Îranê werin

**Pênciwên (Rûdaw) –** Her çiqasî berpirsên îdarî li deriyê sînorî yê navdewletî yê Başmax, hejmara tûrîstên ku ji Îranê tên Silêmaniyê naxwazin bêjin jî, lê bi awayekî eşkere li gor par kêmbûneke berçav a tûrîstên Îranê li Başmaxê tê dîtin.

Mihemed Husên (50) li tenişt dergehê navdewletî yê Başmax, di dikaneke biçûk a bi daran sergirtî de kebaban çêdike û difiroşe û dibêje: "Nêzîka du heftiyane hatina Îraniyan pir kêm bûye. Rojane li pêşber dikana min zêdeyî 50 otombîlên Îraniyan li vir rêz dibûn da ku bên Herêma Kurdistanê, lê niha rojê 4-5 otombîlan tenê tên".

Rêveberê Dergehê sînorî yê navdewletî yê Başmax Rostem Mehmûd Nadir jî got xwepêşandanên li Silêmaniyê li ser anîna aşya û kelûpelên bazirganî ji Îranê bandoreke zêde nekirin, "Rojane hejmareke zêde ya kamyonên barhilgir weke berê tên û dicing."

Li gor serjimêriyeke Rêveberiya Geştûguzarê li Silêmaniyê, par ligel hatina Newroz û biharê, zêdeyî 17 hezar tûrîst hatin Silêmaniyê, ji vê rêjeyê beşek Ereb bûn ku ji navend û başûrê Iraqê hatibûn.

Berpirsê Geştyarî li Rêveberiya Geştûguzarê li Silêmaniyê Mistefa Heme Rehîm ji ber rewşa nexweş a piştî xwepêşandanan bawer nake ku Silêmanî weke par pêşwaziya hejmareke zêde ya tûrîstan bike: "Niha hatina tûrîstan bo Silêmaniyê sifir e, otêl baştirîn şahid in ku çiqasî rêjeya wan kêm bûye."

Mistefa Rehîm wek pisporekî tûrîzimê diyar dike ku heta ev rewşa niha berdewam be, tûrîst ne amade ne bêne Silêmaniyê.

Xwediyê otêla Mem û Zîn li Silêmaniyê Umer Hebîb gotinên Mistefa Rehîm tekez dike û dibêje: "Saziyên sivîl pilan dikirin di vê mehê de li Silêmaniyê çalakiyan bikin, niha çalakiyên xwe sekinandine heta ku rewş aram bibe. Tiştekî normal e hatina tûrîstan kêm bûbe, ji ber rewşa niha dibe ku hejmareke kêm tûrîst berê xwe bidin Silêmaniyê."

# Stêrkên Kurdistanê xuricîn!

Beriya maça krîtîk a li himberê Fenerbahçe, Tîma Voleybolê ya Dicleyê xwest antrenmana xwe bike, lê rêveberiya zanîngehê salon neda wan û di maçê de têk çûn û ji lîgê ketin.



**Bawer Çem** Amed

Tîma Voleybolê ya Jinan a Dîcleyê li hemberî Eczacibaşi têk çû û ji Lîga 1'emîn a Aromayê ket. Hate îdiakirin ku tîma jinan ku weke stêrkên herêmê dihate zanîn, ji ber sersariya rêveberiya Zanîngeha Dîcleyê ketiye.

Tîma Jinan a Voleybolê ya Dîclesporê ku di Lîga Aromayê de têdikoşiya, weke stêrkek xuricî. Tîma serkeftî ku di sala 1994'an de di bin banê Zanîngeha Dîcleyê de hat avakirin û bi performansa xwe ya baş û bilind di Lîga 1'emîn a Aromayê ya Voleybolê ya Jinan a Tirkiyeyê de dilîst, hefta borî li hemberî Eczacibaşi 3-0 têk çû û ji lîgê ket. Tîma jinan ku li Bakurê Kurdistanê yekemîn tîm bû di lîga 1'emîn de dilîst, di demên dawî de ji ber sersariya Zanîngeha Dîcleyê, karsaz û Walîtiya Amedê bi şert û mercên pir giran re rû bi rû mabû.

### 'Zanîngehê salona xwe neda wan'

Tîma jinan ku gelek lîstikvanên serkeftî yên wek Vicktoriya Brice, Natalî û Caretta di bin banê xwe de dida lîstin, piştî ku ji Zanîngeha Dîcleyê veqetiya û di bin banê Kulûba Dîcleyê de cih girt, rastê sersariya Rektoriya Zanîngeha Dîcleyê hat. Li gorî agahiyên ku hatin bidestxistin rêveberiya zanîngehê nehişt ku tîma jinan di salonên sporê yên zanîngehê de antrenman bike. Hate ragihandin ku rêveberiya zanîngehê ji bo ku bibe alternatîfa sporên heyî kulubeke bi navê SKS Spor ava kir û hemû razemenî û pere li vê kulûbê xerç kir. Ev yek di nava sporvan û hezkiriyên sporê de bû sedema vê pirsê: "Ger ku zanîngeh ewqas ji sporê hez dike, çima alîkariya heyî nade tîma jinan a di lîga yekemîn de, lê hemû alîkariyê û salonên sporê dixe xizmeta kulûbeke nû?" Di meha sibatê de Tîma Jinan a Voleybolê ya Fenerbahçeyê ku li cîhanê şampiyonî bi dest xistiye, hate Amedê û bi Tîma Jinan a Dîcleyê re lîst û Dîcleyê têk bir. Beriya ku ev maç bê leyîstin, Tîma Jinan a Dîcleyê ji Zanîngeha Dîcleyê xwest ku salonên sporê ji bo antrenmanan ji wan re vekin. Lê digel hemû daxwazan jî rêveberiya zanîngehê ev daxwaz red kir û hemû deriyên salonên xwe ji wan re girt. Ji ber vê yekê tîma jinan neçar ma ku antrenmanên xwe li salona Lîseya Ziya Gokalpê çêbike. Rektora Zanîngeha Dîcleyê Jale Saraç ku hemû kes dizane bi cemaeta Fetullah Gulen re dide û distîne, piştî bû rektor, hemû peymanên rêveberiya berê ku bi Tîma Jinan a Dîcleyê re kiribû fesih kir û nehişt ku careke din ev tîm ji tesîsên sporê yên zanîngehê sûd werbigre û îstîfade bike. Piştî hatina Saraç, hemû tesîsên Polat Spor, Ziraat Bankasi, Petrol İstasyonu û kafeyên heyî û Park Vadi Kafeterya ku kaniya jêhatinên Tîma Jinan a Dîcleyê bûn, yek bi yek ji xizmeta tîmê derxist.

**Digel serkeftinên wan kes li wan xwedî derneket û wek ew dibêjin: Zanîngeha Dicleyê li hemberê me kete nava hewldanan û bi navê SKS Spor kulûbeke altarnatîf damezirand.**

### 'Xwestin aqubeta wê bibe aqubeta Diyarbakirsporê'

Ji ber ku zanîngehê salona xwe neda tîmê û ti kesî destê xwe yê alîkariyê dirêjî vê tîma serkeftî nekir, buroya çapameniyê ya Tîma Jinan a Dîcleyê ku gelek lîstikvanên wê ji Arjantin, Amerika û Rusyayê hatibûn daxuyaniyeke nivîskî da çapameniyê û bal kişand ku zanîngeh û hin derdorên din dixwazin aqubeta tîma wan jî bibe ya weke Diyarbakirsporê û ew ji lîgê bikevin: "Hemû deriyan li rûyê me girtin û ji bo vê aqubetê bingeh amade dikin. Kulûba me navê Zanîngeha Dîcleyê li ser e. Lê digel vê yekê jî Rektoriya Zanîngeha Dîcleyê bi kîjan mantiqê salon nade me? Maçên kulûba me di televîzyonan de dihatin weşandin û di van weşanan de tim pesnê zanîngeh û bajarê me didan. Lê rêveberiya zanîngehê li hemberî me kete nava helwesteke xirab. Tişta herî berbiçav jî ev e; digel ku tîma me di lîga yekemîn de dilîze jî, xwedî li kulûba me dernakevin, diçin li hemberî me Kulûbeke alternatîf a bi navê Kulûba SKS Spor vedikin. Hemû salon û derfetên zanîngehê di bin xizmeta wê kulûbê de ne. Hemû pêdiviyên wan ên aborî bi cih tînin. Lê binê serkeftina me dikolin û nahêlin ku em bi ser bikevin."

Di hemû maçên Tîma Jinan a Voleybolê ya Dîclesporê de salon heta serî tije dibû û gelek caran cih di salonê de nedima. Lê digel vê hezkirinê jî xwedîderneketina li vê kulubê, balkêş e.





# Hikûmet bi birinc û tirşikê nakeve!

Rêbiwar Kerîm Welî

Roja 9'ê Adarê birêz Serokwezîrê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Berhem Salih çû pêşber parlamenterên Kurdistanê, di bingeh de ev rûniştin ne ji bo bawerîpêdan an jêstandin ji serokwezîr û kabîneya wî bû, lê bi wî alî de hat ajotin. Opozîsyonê di şûna ku careke din di bin çepera parlamentoyê de rewatiya kabîneya xwe dubare bike, dîsa weke herdem rastî xeletiya stratejîk hat. Opozîsyona serekî, ango Fraksiyona Goran bi hinek amar û agahiyên nîvco, ew derfet dan serokwezîr ku şoveke siyasî ji xwe re çêbike. Serokwezîr ne ku tenê ji opozîsyonê baştir amar û agahî li cem hebûn, lê di hinek rewşan de jî ew xafilgîr jî kirin û vê yekê jî da xuyakirin ku opozîsyon pir şaş li hinek meseleyên bingehînî dinêre. Lê berî ku bêm ser vê behsê, dixwazim hinekî hûrtir we bibim cem bersivên serokwezîr.

Navenda bersivên serokwezîr di çarçoveya 17 xalên pêşniyarkirî yên parlamentoyê de bûn. Yek bi yek behsa hemûyan kir, lê di demekê de bi eşkere xwe ji gelek tiştan vedizî, gunehê gelek tiştan jî xist stuyê yê beriya xwe û hinek jî bir berbi rabirdûya dûr. Naxwazim behsa rabirdûya dûr an bi qewlê wî kêmasiyên berê bikim, lê tiştê divê behs bikim îro ye û di çend xalan de behsa wan dikim.

**Yekem:** Birêz Berhem Salih pir bi eşkere got ku Nêçîrvan Barzanî di dema hukmê xwe yê 4 salî de di kabîneya 5'an de li Silêmaniyê ne desthilat bû, lê mikur hat ku desthilata wî li Dihok û Hewlêrê heye. Baş e eger wisa be ji ber çi hikûmeta wî, di demekê de çend rojan berî 17'ê Sibatê dizanibû xwepêşandan tê kirin, nekarî tedbîrên êwle bigre da ku xwîna xelkê nerije?

**Duyem:** Haya wî baş ji dosya kanala Naliya heye, ji ber gava gef li berpirsê kanala Naliya hatibû kirin, bi xwe hatibû agahdarkirin. Lê cenabê wî tenê amaje da du kesan! Yek ji wan li dijî terorê û yekî din jî li Wezareta Pêşmerge kir.

**Sêyem:** Tawîzkirina xelkê û zererên xelkê hiştin ji komîteyê re. Wî nexwest mikur bê ku ne şiyana hikûmetê ji kontrolkirina rewşa ewlekarî ya Silêmaniyê û hevdem bi hawarneçûna daxwazên xelkê ev atmosfera niha afirandiye.

**Çarem:** Wî nekarî bersiva wê yekê bide ku ji ber çi pêşî û berî ku opozîsyon xwe li Berderkê Serayê bike xwedî, neçû ligel xwepêşanderan gotûbêj bike û ji dêlva wê civîna 5 qolî kir?!

> **Eger Goran dixwaze mînaka guherînê deyne pêşber gelê Kurdistanê, baş e beşdarê biryarên siyasî û îdarî bibe.**

**Pêncem:** Serokwezîr di hemû bersivên xwe de hewl da xwe û kabîneya xwe weke qurbanî pêşan bide û berdewam navendên zextê, YNK û PDK'ê tometbar kir ku di karûbarên hikûmetê de desttêwerdanê dikin, lê karên baş ên hikûmetê jî her tim ji bo xwe tomar kirin, xwe wek Hezretê Mesîh nîşanî xelkê da.

Lê derbarê opozîsyonê: niha beriya hemû tiştî opozîsyonê karekî çewt kir ku her di destpêka karê lêpirsînê de meseleya jêstandina baweriyê pêşkêş kir. Ji xwe eger bihata û Yekgirtu û Komela Îslamî 'ku pêştir soz dabû, dengê wê ligel mabûna hikûmetê de be heta du mehên din' ligel Goran nebûna, Goran bi carekê tenê dima. Ev ji alîkî û ji alîkî din ve argumentên Fraksiyona Goran û opozîsyonê ewqasî lawaz bûn ku buhayê wê yekê nebûn ne ku bawerî pê ji serokwezîr, yan ji wezîrekî jî bistîne. Loma jî serokwezîr pir bi zîrekî beşa herî zêde ya kesên li dijî xwe bikar anî, her ji amar û agahiyên wan di meseleya bêkariyê de heta digihe meseleya kirêçî û...htd.

Êdî ji hemuyan xweştir ew bû ku piştî vê bilindî û nizimahiyê parlamenterê Goran Karwan Salih ku bi xwe digot nehiştin li parlamentoyê belgeyên xwe yên girîng pêşkêş bike û di rûniştinan de biaxive, hatibû ser kanala KNN û digot 'belgeyên wisa li ba min bûn ku eger bihiştana biaxivim, min ê wisa bikira ku serokê hikûmetê bi xwe destê xwe hilgire û bawerî ji hikûmeta wî bê standin.' Vî parlamenterê birêz, gava behsa belgeyên xwe yên gewre kir, dilê min bi opozîsyonê şewitî. Beşa herî girîng a belgeyên hilweşênerên hikûmetê ku li cem vî birêzî bûn ev bûn: "Pereyên çêkirina xwendingehekê li Şawês hatine xerckirin, ofîsa serokwezîr bi buhayê 12 milyon dînaran birinc û tirşik xwariye, êdî hema bi vê jî nesekinîne ku birinc û tirşik xwarine, lê piştre qotikên çigareyan di nav tirşikê de vemirandine û nedane pasevanên civata wezîran, di rojekê de ji malbatekê 3 kes hatine damezirandin û ...htd". Welle baş bû rê nedanê ku biaxive.

Niha ku Goran nikare li parlamentoyê baweriyê ji hikûmetê bistîne, êdî berê xwe dide kolanê û çi jê tê dike, da ku her çawa be ji hikûmetê bawerî standinê bike wek daxwaza tevahiya bajarên Kurdistanê. Lê Goran nabe wêya jî jibîr bike ku kesên PDK û YNK'ê jî hene û bê deng nabin. Lewra bi baweriya min eger Goran dixwaze mînaka guherînê deyne pêşber gelê Kurdistanê, wisa baş e bi riya lihevkirina siyasî bê nav hikûmetê û beşdarê biryarên siyasî û îdarî bibe. Ev xelk heta hetayê li ser cadeyan namînin û PDK û YNK jî bi wê hêsaniya Goran dest ji desthilatê bernadin. Lewra çareseriya navendî ew e ku Goran jî tevî hikûmetê bibe û nehêle nanbirîn berdewam be û eger bikaribe mînaka karê îdarî yê modern pêşkêşî gelê Kurdistanê bike.



## Ev ne em in, ew ew in

# Destê derveyî û fikirîna Barzanî

David Romano

Hikûmetekê nîşanê min bide ku xirab bibe û aloziyên navxweyî nexe stûyê kesên derve. Ez jî wê welatekê nîşanî we bidim ku amade ye pirsgirêkên xwe çareser bike.

Em timî wê yekê dibînin, dema alozî, xwepêşandan yan jî li cihekê serhildan çêbibe û deshilatdarên wî cihî rasterast 'Destên derve' tometbar dikin û bê xeberî destê xwe ji bo pilana derve bi armanca 'Lawazkirin û parçekirina welatê xwe' radikêşin. Piştî ku di hilbijartinên 2009'an ên Îranê de sextekarî derketin, xwepêşander rijan ser kolanan û deshilatdarên Tehranê ragihandin: "Ev pilana Amerîka û Siyonîzmê ya ji bo armanca lawazkirina Komara Îslamî ye." Ev bi salan e siyasetmedar û generalên Enqereyê dubare dikin ku Partiya Karkerên Kurdistan (PKK) bi armanca parçekirina Tirkiyê destek biyanî hatiye damezirandin. Wekî ku bêjî, peymana Sewr siyaseta aliyê derve bû. Eger Kurdên Sûriye daxwaza mafên xwe yên bingehîn bikin, wê demê wê bên gûnehbarkirin ku sîxûrê Îsraîlê ne. Dema ku xwepêşandanên Tûnis, Misir û Lîbya dest pê kirin, deshilatdarên hersê welatan gotin, pilanek navnetewî ji bo derxistina ne aramiya welatê me heye. Heya li Kurdistana Îraqê jî, dema di sê heftiyên derbazbûyî de çend xwepêşandanên biçûk rûdan, piraniya çavdêran destê tometbariyê dirêjî Îranê kirin.

Ev hemû gûncaw e: "Hûn dibînin ev ne em in, ew in. Xelk ewqas ji me ne razî nîne ku bên ser kolan an jî ser çiyan. Li dewleta me ya xweş ti pirsgirêk nîne, ji ber wê yekê li benda guhertinên mezin nebin û reforman jî ji me nexwazin.

Ev karê dijminan e û ji bo dijberiya me dikin. Ji ber vê yekê divê em xwe biparêzin. Lewma bila em hemû li derdora ala xwe kom bibin û bi hev re li dijî destê derve rawestin. Di heman demê de hewl bidin ku fikra wê yekê nekin rûbirûyê rewşa niha di nava welat de bibin an jî derbirîna nerazîbûna li beramberî deshilata çîna bijartî heye."

> **Hûn dibînin ev ne em in, ew in. Xelk ewqas ji me ne razî nîne ku bê ser kolanan. Li dewleta me ya xweş ti pirsgirêk nîne...**

Piraniya demê ji bo xebatkirina aliyê derve hewl dan, bi karek xeyalî diçe. Mînak, xwepêşandanên vê dawiyê yên Tûnis, Misir û Lîbya ti destek derve li pişt nebû yan jî piştgiriyek derve yê serekî nebû. Îranê hemû xelkê Silêmanî pal da ku heta hemû rojê li pêşiya dergehê Seraya Azadî kom bibin, lê hinek caran jî dest lêwerdana derve jî rûdide. Mînak, şoreşa Kurdên li Îraq û Îranê, ji aliyê deshilatdarên biyanî ve bi armanca lawazkirina hikûmeta Bexda û Tehranê, piştgiriyek zêde hat kirin. Dema gerîlayên PKK'ê jî li dijî Enqere şer dikirin, baregehên wan li Sûriye û Libnan hebûn. Ji aliyê Yûnanîstan û hinek caran jî ji aliyê Îranê ve alîkarî dihat kirin. Lê hemû Kurd baş dizanin ku ew şoreş rast bû û "Ji aliyê deshilatdarên derve nehatibûn çêkirin." Destê derve nikare tiştekê ji tûnetiyê çê bike. Ew dewletên ku dam û dezgehên xurt û gel bawerî bi wê sîstemê hene, nabe ji destlêwerdana derve bitirse. Kes bawer nake ku nimûne, Amerîka, Almanya û Japonya rastî şerê çekdarî yan jî pêngavên xwepêşandanê bibin ku ji aliyê Çîn, Rûsya yan jî aliyek din ve piştgiriyê bidê.

Ceribandina rast a ji aliyê deshilatdar ve bi wê demê ye ku, wê li beramberî van aloziyan xwediyê çi helwestekê be. Li Dîmeşq û Tehranê ji bo gunehbarkirina dijminê derve hê negihane helwesta standart. Li Enqerê vê helwestê her tim tê redkirin ku di nava welatê wî de pirsgirêk heye û ber bi nemanê ve diçe. Lê li Hewlêrê li cihê ku destê tometê ji bo aliyê derve rakêşe, her ji niha ve Serok Barzanî dest bi fikirîna hilbijartinek pêşwext kiriye. Herwiha komîteya lêkolînê li ser kuştinên vê dawiyê û êrişbirina li ser kanala Nalya jî pêkaniye. Ev helwestên despêkê yên cihê dilxweşiyan e ku ji aliyê serokatiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê ve hatîn encamdan. Ya zêdetir dilxweş, divê pêngav ji aliyê wê komîteyê ve bi awayek serbixwe û bê alî be, bê alî kar bikin û li gel nêzîkbûna hilbijartinê ji bo lawazkirina gendeliyê hewl bidin. Ev jî ew pêngav in ku dam û dezgehên xurt ava dikin û dibin sedema wê yekê ku xelk baweriya xwe bi wê sîstemê bîne. Piştî vê yekê jî pêwîst nake kes ji bo derxistina aloziya navxweyî ji destên derve bitirse.

# Mehandina estiyan

Dr. Nacî Mamedî*

Artrose peyveke yûnanî ye; osteo ango estî, di nav Kurdan de jî wek mehandina estiyan tê naskirin. Piraniya vê nexweşiyê di estiyê çokê de, enîşk, movikê tiliyan û estiyê sermil de derdikeve. Dema ku ew kirkirîkên di navbera estiyan de bê fonksiyon dimînin û kirkirîk namîne, hingê valahi dimînin û bi tevgerendina mirov re estî li hev dikevin û dibe sedema mehandina wan. Bi mihandinê re êş û azar çê dibe.

**Sedema ku estî dimehe çi ye?**

**Dr. Nacî Mamedî:** Mehandina estiyan dibe ku irsî be, ji ber ku dema bi dê û bav an jî xwişk û bira re hebe dikare derbasî kesê din ên malbatê jî bibe. Hinek sedemên cuda jî hene, mînak: Dema ku nexweşiyek derûnî hebe, dîsa dikare ev nexweşî xwe nîşan bide. Piştî temenê 40 salî hedî hedî destpê dike. Di nava nexweşên me yên Kurd de herî pir jinên Kurd şikayeta êşa çokê dikin. Ev pirsgirêkek gelek cîdî ye. Jinên Kurd pir li ser çokê xwe rîdinên, ev yek ji bo çokan pir xeter e; him li ser rûdinên û him jî dixin bin xwe, ev zirara herî xirab e. Berî ku artros bi wan re derkeve pêwîst e biçin cem bijîşk, hinek derman bigrin. Bi rastî gelek jinên Kurd xwadiya kîloyên pir zêde ne, dibe ku wan kîloyên xwe daxin. Ji ber ew kîloyên zêde her tim zirarê didin wan.

Rûniştina li ser çokan û karên gelek giran ji bo estiyan gelek xirab in.

**Jinê Kurdan dibêjin em her tim li ser linga ne û ew vê yekê wek sporê dîbînin. Ev çiqas rast e?**

Di almanî de 2 gotinên cuda hene: yek, dibêjin 'bewegung' û ya din jî 'belastung' di navbera wan herdu gotinan de dinya qeder cudahî heye. Ew karê ku jinên Kurd dikin ew ne hareket e, ew bixwe zor dayîn û zehmet dayîna çokê ye. Minak dema ku yek biçe avjeniyê hingê di nav avê de hereketê piyan dibe wek sporê, lê dema ku tu her roj 20 kîloyan bigrî û biçî û bê ev ne spor e, ev hemû zor dide estiyan û wan dimehîne. Ji ber wê ez dibêjim pir çûn û hatina ser lingan mirov nikare wek sporê binav bike, berevaj zirarê dide estî. Berê jî mirov pir bi derencê re diçûn û dihatin; ev jî gelek bandor dike li ser mehandina estiyan. Xwe westandin û zirardana bedenê cûda ye û bi zanebûn sporkirin cûda ye; divê ev herdu ji hev baş bên cûdakirin.

**Çi bandora xwarinê li ser mehandina estiyan heye?**

Ji bo bedenek saxlem xwarin rolek gelek girîng dileyîze. Xwarina Kurdan pir ne bi tendirust e, an pir ji xwarinên bi kohlinditrat, wek pirinc, nan û şîraniyê; an jî pir ji xwarinên bi protein hesdikin. Ji bo bedenek saxlam rojê 80 gr şekir û 20-40 gr protein bes e, ango goşt ê din jî mîna rûn be. Lê li cem me Kurdan ne wisa ye. An pir kêm e an jî pir zêde ye, her du jî nebaş in divê di navberê de balansek bê girtin.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

**Dr. Nacî Mamedî ji Rojhilatê Kurdistanê ye û li Almayayê dijî.*

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Hunermendek esil Kurd ji Ruhayê. 2- Markayek trimbêlên Swêdî – Nehat, li paş e – Gotinek ecêbmayînê – Nuh, modern – Hîç, nabe. 3- Li Îranê bajarek – Armanc, kam, daxwaz (berepaş). 4- Heywan tê de êm dixwin, çêkirin – Kurtenivîsên bîranînê – Notayek – Kurmik, kurmikên mezin. 5- Naskirin, ne xerîb – Êş, jan (berepaş). 6- Zik, çerm – Nehatin, neçûn (berepaş). 7- Çi lê hat, sebeb (berepaş) – Serbestî, felatî. 8- Serokê şoreşa 1917 a Rûsyayê. 9- Navekî keç û jinan. 10- Ne tehl, wek şekir – Xwarinek, paste.

**Serejêr:** 1- Li Tirkiyê bajarek. 2- Hewa, oksîjen, gazek – Notayek – Deşt, erda rast û fireh. 3- Dirêjkirin, li erdê danîn. 4- Ekonomî, îktîsadî – Kesên ji Çînê. 5- Ne kevn, taze – Xwarinek sereke. 6- Bawerî, bawerîya olî – Damar, kok. 7- Di demên kevnar de rêxistina dîwarjen, xerat û karkirên din. Îro ev rêxistin di dinyayê de rêxistinek herî neyînî û xurt e – Geya û pûşê şil ê nav avê (berepaş). 8- Paytextê Yewnanistanê – Redkirin, paşdevegerandin. 9- Bi Erebî çav – Olperest, dînperest (berepaş). 10- Pê cil û berg tên dirûtin – Nîjad û koka Ereban – Na, no, nabe. 11- Bê av, avê dixwaze. 12- Tiştên bi insan ve girêdayî. 13- Di dîroka Grekîyan de xwedayek (berepaş). 14- Darek, jina bê mêr. 15- Govend, dans (berepaş). 16- Kurtegotina "Emîna".

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | | | | | | | | ■ |
| 2 | | | | | ■ | | | ■ | | | ■ | | | ■ | | |
| 3 | | ■ | | | | | | | | ■ | | | | | | |
| 4 | | | | | ■ | | | | ■ | | | | | | | |
| 5 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |
| 6 | | ■ | | | | | ■ | | | | | | | | | |
| 7 | | | | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 8 | | | | | | ■ | | ■ | | ■ | | | | | | |
| 9 | ■ | | ■ | | | | | | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 85

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | S | E | R | A | N | S | E | R | ■ | E | R | E | B | İ | ■ | İ |
| 2 | A | S | A | L | A | ■ | L | İ | S | R | Ü | T | ■ | S | A | W |
| 3 | Z | A | Z | A | ■ | S | A | L | E | H | ■ | A | R | D | M | A |
| 4 | Ü | R | A | N | Y | Ü | M | ■ | E | ■ | İ | E | A | T | A | B |
| 5 | M | E | N | D | ■ | A | R | İ | Ş | E | | | | | | |
| 6 | A | T | ■ | İ | N | D | E | K | O | ■ | | | | | | |
| 7 | N | ■ | E | N | E | ■ | D | A | K | U | | | | | | |
| 8 | ■ | A | Ş | ■ | R | A | ■ | R | ■ | K | | | | | | |
| 9 | E | L | İ | S | A | ■ | F | O | L | A | | | | | | |
| 10 | B | E | R | A | T | A | ■ | Z | A | B | | | | | | |

## Hefta pêş me çalakiyên Kurdan

**Meşa Newrozê ya YEK-KOM'ê**

Li Almanya, bajarê **Düsseldorfê**

Destpêk: Şemî, **19'ê Adarê**, **Demjimêr: 09:00**

Bername:
Destpêk, Koro ya Zarokan, Xelil Xemgîn, Aynur Doğan, Şahê Bedo, Grup Bajar (Kardeş Türküler), Ali ihsan Doğan, Silbûs û Tarî, axaftin û peyam, sînevîzyon û govend

**Şeva Newrozê ya KOMKAR'ê**

Li Almanya, bajarê **Wuppertalê**

**Destpêk:** Şemî, **19'ê Adarê, Demjimêr: 09:00**
**Navnîşan:** Uni Wuppertal
Albert-Einstein-Strasse 20
**Destpêk:** Şemî, **19'ê Adarê, Demjimêr: 19:00**
**Bername:**
Şivan Perwer, Fatê, Xero Abbas, Zele Mele,
Rojan Deliyar, Koma Hêvî û Folklor

**Şeva Newrozê ya Kurdên Rojava (Kurdên Sûriye) li Almanya, bajarê Dortmundê**

**Destpêk:** 20'ê Adarê, Demjimêr: 16:00
**Navnîşan:** Hannöversche str.22B
**Bername:** Ronîcan, Elind, Raman, Kerîm Şêxo û Evîna Welat
**Derbasbûn** *12 Euro*

## Peyamên xwe ji Rûdawê re bişîn

Xwendevanên hêja,
êdî hûn dikarin peyam û îlanên xwe ji me re bişînin, ew ê belaş li vir werin weşandin. Hûn dikarin peyamên sersaxiyê, pîrozbahiyan, agahiyên derbarê hemû cûreyên çalakiyan bi rêya e-mail a me **(info@rudaw.eu)** ji me re bişînin. Bi şertê ku nivîsên we ji 100 peyvan ne dirêjtir bin, em ê wan li vir biweşînin.

# MAHABAD



**Mahabad paytexta Rojhilatê Kurdistanê ye. Bajarekî biçûk e lê ji bo Kurdan gelekî bi bandor e. Jiber ku ew di sala 1946'an de bû paytextê yekemîn Komara Kurdistanê. Çandin û ajelvanî li Mahabadê karên herî pêş in. Hewaya wê gelekî xweş e, ne xasm e. Bendavê Mahabadê ku dikeve kêleka bajar, Mahabad hîn xweş kiriye.**

Ji çepê berbi rastê ve, van şeş peyvan rast bicîh bike! Ew ê di hêla şîn de peyvek derkeve. Ev kîjan peyv e? Binivîse.




Beroj,
Dibistan,
Hestî
Nal,
Kato,
Tav

# ÇÎROK

## ŞÊR Û MIŞK



Mişkekî gelekî tirsonek di nava daristanekî mezin de dijiya. Ev mişk ewqasî tirsonek bû dema dimeşiya tim dilerizî û li dora xwe mêze dikir. Rojekî mişk diçe derve li xwarinê digere. Mişkê birçî bi tirsa xwe ve çep rast li dora xwe dinêre, ji nişka ve dibîne ku vaye ketiye nava lepên şêrekî. Mişk dibêje: "Şêr padişahê min ez ketim bextê te û xwedê, min nexwe, li min bibûre, ez ê heta hebim başiya te ji bîr nekim." Padişahê daristanê şêr kir qa qa û bi dengê bilind keniya, got. "Erê lo mişko, kes li vê daristana mezin nema ez muhtacî wî bibim, ezê li benda te bim? Ti carî ez ê muhtacî te nebim, lê kerem bike here." Roja din şêrê pozbilind haya wî ji wî nebû ket tora nêçîrvanan û nema karibû xilas bibe. Mişk ji wê aliyê hat, lê nihêrî, halê şêr xerab e. Wî xwe gihand şêr û bi diranên xwe yên tûj û biçûk tora dora şêr qetand û şêr ji tehlûka mirinê rizgar kir. Şêr jî li wir li mişk mêze kir û serê xwe hejand, "Erê, erê Mamê Mişk , ev rast e dinya ne bi zorê ye, dinya bi dorê ye."



## KURDÎ FÊR BIBE

**Êê** ئێ ێ

**Êlek** ئێلەك



**Hêk** هێلكە

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk